5



مەلا کرێکار بۆ (رووداو):

پارەم پێویست بێ لە کوردی ئەورووپای وەردەگرم

Xortên Kurd ên êzîdî li Almanyayê tûrnovaya fût-bolê li dar xis-tin ▶rûpel 8



Rûdaw
ÇAPA EWROPA
Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 103 | 07 Tîrmeh / Juli 2011

# Peyamên hevnêzîkbûnê ji PKK û PDK



Wêne: Rûdaw

• Murat Karayilan: Helwestên kek Neçîrvan pewîst û guncav dibînim

• Nêçîrvan Barzanî: Pêwîst e Enqere rastiya PKKê qebûl bike!



Wêne: Rûdaw

3 / 6 /7/14 »

## Koalisyona Kurdî

### Kurdên Rojava Tevgera Neteweya Kurd damezirandin

Nûnerên 10 partiyên Kurdên Rojava li Almanya civiyan û koalisyona bi navê 'Tevgera Neteweya Kurd' dest pê kirin. Nûnerên partiyan radigihandin ku ev tevger wê nûnertiya Kurdên Rojava bike ▶11

## Sînemaya kurdî

### Mitosfilm û Rêya Siyar

Fîlmê Mehmet Aktaş û Hîşam Ziman 'Rêya Siyar' di sibata 2012ê de tê sînemayan. Aktaş ekîba fîlm wiha da nasîn: "Tîma me bi dilekî kurdî û aqilê ewropî xebitî"... ▶9



3 mehan Rûdawê bê pere bixwîne ▶9







Great Britain

## Rûdaw ket 3 saliya xwe

Xwendevana/ê hêja,

Bi vê hejmara di destê we de (103) Rûdaw (Çapa Ewropa) 2 saliya xwe tije dike û dikeve sala 3yê. Rûdawê herwiha bi vê hejmarê şîrketa xwe ya belavkirinê jî guhert û ji niha û şûn de Rûdaw ji aliyê şîrketa alman ya belavkirinê Axel Springer Vertriebsservice GmbH tê belavkirin. Di demên borî de gelek xwendevanan em agahdar dikirin û gazinc dikirin ku Rûdaw li bajar, anjî taxa wan tune. Ji bo ku xwendevan bikarin bi hêsanî Rûdawê bi dest bixin, me şîrketa xwe ya belavkirinê guhert û Rûdaw wê êdî li gelek bajar û bajarokan li rojnamefiroşan li benda xwedevanen kurd be. Bi vê guhertinê em hêvî dikin her Kurdê ku bixwaze Rûdawê bi dest bixe, bikaribe bi hêsanî Rûdawê ji rojnamefiroşê nêzîkî xwe wergire. Di heman demê de em daxwaza arîkariyê ji xwedevanên xwe dikin ku dost û hevalên xwe ji sistema nû ya belavkirina Rûdawê haydar bikin, da ku xwendevanên kurd xwedî li rojnameya xwe derkevin. Ji ber ku eger hayê xwedevanan ji Rûdawê tune be û Rûdaw li rojnamefiroşên nû neyê firotin, piştî demekê Rûdaw wê li wan rojnamefiroşan nemîne. Ji vê hefteyê û heta destpêka meha îlonê hefte bi hefte tiraj û hejmara rojnamefiroşên Rûdawê wê bên zêdekirin, hem li Almanya û hem jî li welatên Ewrûpayê. Di van çend hefteyên pêş de firotina Rûdawê wê li Swêd, Danîmarka, Hollanda û Awisturya jî dest pê bike.

Wekî din dibe ku bala xwedevanan kişandibe, ev 2 hefte ne me di aliyê rastnivîsê de jî hinek guhertin pêkanîn. Ev guhertin bi armanca ji hevdu nêzîkkirina rastnivîsa kurmancî di çapemeniya kurdî de pêk hat û em bi hêvî ne ku bi dilê xwedevanan jî be. Rûdaw wê wekî din jî di hinek waran de xwe nû bike. Em bi hêvî ne ku xwendevanên kurd jî li rojnameya xwe xwedî derkevin, da ku Rûdaw bi her hejmarê xwe nû û xurttir bike.

*Edîtor*

## Bo cara yekem li Tirkiyê

# PKK ji 'rêxistineke terorîst' dibe 'bizaveke yaxî'



Çandar tevgera PKKê wek 4. yaxîbûna Kurdan binav dike û dibêje:"Dema naskirina PKKê wek rêxistineke serhildêr hatiye."

**Hêmin Xoşnaw** Hewlêr

Rapora nivîskarê Tirk ê navdar Cengîz Çandar derbarê çareseriya kêşeya kurd de ku li konferansa Weqfa Lêkolînên Aborî û Civakî li Tirkiyê (TESEV)ê pêşkêş kir, gotûbêjeke berfireh li Tirkiyê çêkir. Çavdêrên siyasî raporê dewlemend dibînin û bi baweriya wan bo çareseriya pirsgirêka kurd weke nexşeriyekê ye.

Weqfa Lêkolînên Aborî û Civakî li Tirkiyê TESEV di 24-25ê gulana borî de li otela Nippona-Istanbul konferansek bi navê "Çawaniya Nehiştina Tundûtûjiyê di Kêşeya Kurd de" bi amadebûna çend parlamenterên kurd ji fraksyonên cuda yên parlamentoya Tirkiyê saz kir.

Di vê konfernasê de, nivîserê Tirk ê navdar Cengîz Çandar, rapora xwe di bin navê "Daketina ji çiya- PKK çawa dest ji çekan berdide?- nehiştina tundûtûjiyê di kêşeya Kurd de" pêşkêş kir. Cengîz Çandar di lêkolîna xwe de bi awayekî eşkere destê xwe datîne ser birînan û bi pêşniyarên xwe jî hewl dide birînên pirsa kurd derman bike. Çandar di serê rapora xwe de tekez dike ku PKK ne bizaveke terorîst e, lê bizaveke yaxî ye: "Ji ber ku kêşeya PKKê ji roja derketina wê weke kêşeya terorê hat temaşekirin, çareserî jê re nehat dîtin, lewma êdî pêwîst e weke `yaxîbûneke Kurdan` bê wesifkirin."

### ASAM: Danasîna PKKê sûdmend e

Serokê Rêxistina Lêkolînên Civakî û Aborî `Ekopolo Tik` Dr. Tarik Çeleng tekez dike ku rapor bi ruhekî xwedî tecrûbe yê rojnamevaniyê hatiye nivîsîn û tevî kêmasiyên wê jî, rapor bi awayekî vekirî bi zimanekî dûr ji zimanê siyasetê tekeziyê li rastiyan dike: "Rast e PKKê bizaveke yaxîbûnê ye û pêwîst e bi vî rengî bê temaşekirin. Nemaze daxwaz û projeyên PKKê piştî sala 1995ê bi tevahî dikevin çarçoveya daxwazên bizaveke serhildêr."

Serokê Navenda Lêkolînên Stratejîk Avrasya ASAM Nîhat Alî Ozcan ku dezgeheke nêzîk e ji hikûmet û AKPê û rola şêwirmendiyê dilîze, tekez dike ku Tirkiye di van rojan de vê raporê gengeşe dike. Derbarê pênasekirina PKKê weke tevgereke yaxî Ozcan dibêje: "Danasîna PKKê weke bizaveke yaxî, ji niha şûnde bo çareseriya vê kêşeya 30 salî sûdmend e."

Cengîz Çandar piştî konferansê bi çend rojan di hevpeyvînekê de ligel rojnameya Tarafê derbarê cudahiya yaxîbûna PKKê ligel yaxîbûnên berê yên Kurdan de dibêje: "Hejmara yaxîbûnên Kurdan di heyama komara Tirkiyeyê de 4 bûn. Şêx Seîdê Pîran, serhildana Agirî, yaxîbûna Dêrsimê û dûre jî yaxîbûna PKKê ligel hersê yaxîbûnên berê cuda ye. Rêberê vê yaxîbûna dawî hê jî sax e. Ev îsyan li navçeyeke cografîk a berteng de nefetisiye û ji her tiştî girîngtir hêza çekdarî ya vê yaxîbûnê tevî hemû hewldanan jinav neçû."

### "Divê hemû organên dewletê bi Ocalan re gotûbej bikin"

Çandar di heman hevpeyvînê de derbarê rola Abdulla Ocalan û cudakirina kêşeya kurd ji kêşeya PKKê dibêje: "Ne mimkûn e kêşeya kurd û kêşeya PKKê ji hev bên cudakirin. Ewên ligel wan axivîme ku hinek berpirsên Kurdên Îraqê jî di nav wan de hene, tekez dikin ku bê Ocalan ne mimkûn e PKK bê razîkirin."

Çandar înkar nake ku ev çend sal in Tirkiye li girava Îmrali gotûbêjan ligel Ocalan dike, lê weke Çandar tekez dike, ev gotûbêj ne ji bo çareseriya kêşeya kurd bûn, lê hewldanek bûn ku bi riya Ocalan PKK bê lawazkirin: "Pêwîst e ji niha şûnde hemû organên dewletê tevî gotûbêjên ligel Ocalan bibin. Nabe êdî gotûbêj di bin kontrol û insiy tîfa MITê birêve herin."

Bi dîtina Serokê Rêxistina Lêkolînên Civakî û Aborî `Ekopolo Tik` Dr. Tarik Çeleng: "Dewlet û hikûmet vê rastiyê dibînin, lê ji tirsa reaksiyona raya giştî cîbicîkirinê dispêrin demê. Ev jî wisa dike kêşe aloztir bibin û çareserî dereng bikeve. Lê piştî hilbijartinên 12ê hezîranê, nemaze ji ber ku AKPê ji sedî 50ê dengan anî, derfeta xweveşartin û paşxistina vî karî nemaye."

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.





● **Endama Parlamentoya Tirkiyeyê Gultan Kişanak: Aliyên siyasî û wîjdanî di daxuyaniyên Nêçîrvan Barzanî de hene**

● **Mamosteyê zanîngeha Bilgi li Enqere, Dogu Ergil: Nêçîrvan Barzanî berî çend salan nedigot top li aliyê Enqere ye, çimkî wê demê pêwîst bû derfet bo AKPê bê dayîn**

# Daxuyaniyên Nêçîrvan Barzanî çareseriya aştiyane ya pirsa Kurd li Tirkiyeyê germ dike



Hasan Cemal piştî hevpeyvîna ligel Karayilan li Hewlêrê serdana Nêçîrvan Barzanî kir

**Hêmin Xoşnaw** Hewlêr

Roja 30ê hezîranê rojnamevanê tirk ê navdar Hasan Cemal di quncika xwe ya di rojnameya Milliyet de bi sernavê "Top (gok) li aliyê Enqerê ye" kurtiya daxuyaniyên Cîgirê Serokê PDKê Nêçîrvan Barzanî li ser çareseriya pirsa kurd li Tirkiyeyê, gihand raya giştî ya vî welatî. Çavdêrên siyasî yên Tirkiyeyê bi awayekî cuda van daxuyaniyan dinirxînin, ku gotûbêj derbarê çareseriya pirsa kurd li Tirkiyeyê germtir kirin.

Dawiya meha borî Hasan Cemal bo cara duyemîn di hundirê van 3 salên dawî de berê xwe da Qendîl û ligel Serokê Konseya Rêveberiya KCKê Murat Karayilan, piştre jî li Hewlêrê ligel Nêçîrvan Barzanî, gotûbêj kirin û paşê kurtiya wan belav kir.

### "Divê pêngava yekemîn Enqere bavêje"

Li gor Hasan Cemal, Nêçîrvan Barzanî dibêje pêwîst e Enqere rastiya PKKê qebûl bike û plana aştiyê bide ber xwe, herwiha hebûna serokê PKKê li Îmralî li berçav bigire, hem bo başkirina rewşa wî û hem di gotûbêjên çareseriya pirsa Kurd de, bo Hatîp Dîcle û parlamenterên girtî li ser pirsa KCKê divê pêngavên baş bên avêtin, niyeteke baş beramber penaberên kampa Mexmûr bê nîşandan û bêbaweriya di navbera herdu aliyan de neyê hiştin.

Hasan Cemal dinivsîne ku Nêçîrvan Barzanî herwiha gotiye "Niha top li aliyê Enqerê ye, derfeteke zêrîn bo aştiyê heye û divê pêngava yekemîn ji aliyê Enqere destpê bike."Parlementera bajarê Sêrtê û hevseroka berê ya BDPê Gultan Kişanak peyamên Nêçîrvan Barzanî wiha şirove dike ku du beş in: "Beşekî wan mirovî û wîjdanî ye û beşekî din jî peyameke siyasî ye." Kişanak wiha pêde çû: "Da ku gelê kurd bigihe mafên xwe û şîdet nemîne, ev peyam mirovî û wîjdanî ye, lê aliyê siyasî yê vê peyamê ew e ku heya Tirkiye aram nebe, navçe û Rojhilata Navîn jî aramiyê nabînin. Lewma peyamên birêz Barzanî giring bûn."

### Pêwendiyên Nêçîrvan Barzanî ligel Tirkiyeyê

Nêçîrvan Barzanî ku weke kesekî pir bibandor di pêwendiyên navbera Tirkiye û Herêma Kurdistanê de tê hejmartin. Ji ber pêwendiya wî ya germ ligel Recep Tayyip Erdogan û parastina tayê têkiliyan ligel Tirkiyeyê di rewşên herî dijwar de, Barzanî di serdema serokatiya kabîneya 4 û 5ê de pêwendî ligel Tirkiyeyê xurt kir, ku di çend salên borî de gihişt asteke fermî ya zîrveyî. Di heman demê de bandoreke erênî ya pêwendiyên aborî li ser peydekirina rewşeke aştiyane li Tirkiyeyê û xweşkirina rê li ber xebata siyasî ya gelê kurd hebû, li kêleka sedemên din ku Tirkiye û Herêma Kurdistanê ji girêka şerkirina ligel PKKê derbasî pêwendiyên fermî û gotûbêjên li ser çareseriya siyasî ya aştiyane bûn.

Mamosteyê zanîngeha Bilgi li Enqere û pisporê pirsa Kurd Dogu Ergil, peyama Nêçîrvan Barzanî bi vê qonaxa nû ve, ku Tirkiye vêga tê re derbas dibe, girêdide û ji Rûdawê re got: "Hevdîtina Barzanî ligel Hasan Cemal

## Kişanak: Gotinên Nêçîrvan Barzanî xizmeta rastî û çareseriyê dikin

piştî hevdîtina Karayilan tê. Ev nîşan dide ku guherînek li ser polîtîka Qendîl derbarê çareseriya pirsa Kurd de tê têbînîkirin. Di heman demê de îşareteke jî li ser wê yekê ku hevsengî guherî ne û çênabe bi rêya hevsengiyên kevin hewldana çareseriya pirsa Kurd bê kirin."

Lê bi baweriya profesor tirk Baskin Oran, berê peyamê li AKPê û Erdogan e û da ku bêyî ji dest dana demê hewldanên ciddî ji bo çareseriya pirsa Kurd bikin û wiha dibeje: "Her çiqasî serokwezîr Erdogan û partiya wî dengên zêdetir di hilbijartinan de bidestve anîn, lê li başûrê rojhilat rêjeya deng û kursiyên AKPê kêmtir bû, sedemê vê yekê jî bêbaweriya Kurdan bi AKPê bû; lewma Barzanî ji Erdogan re dibêje eger vê carê pêngavan bo çareseriyê navêjî, êdî ne tenê Kurdên Tirkiyeyê lê baweriya Kurdên Îraq û cihên din jî ji dest didî." Baskin Oran wiha berdewan kir: "Ew peyama ku dibêje top li aliyê Enqere ye tê wateya ku Erdogan yan baweriya hemû Kurdan bidestve tîne, yan baweriya hemûyan wenda dike."

Navborî ku di hilbijartinên Tîrmeha 2007ê de berendamê serbixwe yê DTPê bû, got: "Lê mixabin di testkirina kirîza parlamenteran de, AKPya ku piştrast e bi ji sedî 50ê dengderên Tirkiyeyê; winda kir." Gultan Kişanak peyama Nêçîrvan Barzanî bi bûyerên ku di çend rojên dawî de derketin girê dide û dibêje: "Bi zimanekî nerasterast tekez dike ku pêwîst e gotûbêj ligel Ocalan bigihîjin qonaxa rêkeftinê. Di heman demê de daxwazê ji hikûmetê dike zêdetir xwe dûrî vê pirsê neke û bê ser xetê, çimkî tenê hikûmet dikare pirsgirêkan çareser bike. Di vî alî de gotinên Nêçîrvan Barzanî xizmeta rastî û çareseriyê dikin." Lê li gor Dogu Ergil, divê aliyên têkildar pirsiyarê ji xwe bikin ku "Ji ber çi berî çend salan Nêçîrvan Barzanî nedigot top li aliyê Enqere ye, çimkî wê çaxê pêwîst bû derfet bo AKPê bê dayin, lê îro her kes vekirî dibêje ku hevsenga berê nemaye û weke Barzanî dibêje derfeteke zêrîn li ber dest e."

## Ji bo çareserkirina pirsa Kurd li Tirkiyeyê, 7 xal:

Piştî hevdîtina xwe ya 28ê hezîranê 2011 ligel Cîgirê Serokê Partiya Demokrata Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî, rojnamevanê Tirk Hasan Cemal du roj paşê di stûna xwe ya di rojnameya tirk 'Milliyet' de van 7 nokteyan rêz dike ku Nêçîrvan Barzanî ji bo çareseriya pirsa kurd li Bakur bi rêyên aştiyane girîng dibîne:

**1.** *Êdî Enqere 'rastiya PKKê' bibîne, vê rastiyê qebûl bike û plana aştiyê dabirêje.*

**2.** *Li Enqerê dewlet ne zêde, îro êdî 'yek serî' tevbigere.*

**3.** *Rastiya lîderê bingehîn ê PKKê, ku niha li Îmralî di girtîgehê de ye, kêliyekê jî ji ber çav neyê avêtin.*

**4.** *Li gor girîngiya mezin a di vekirina deriyê aştiyê de liberçavgirtina 'mercên Îmralî' yên Ocalan, pêngavên demkurt bên avêtin, dariştina demeke navîn û direj.*

**5.** *Rewşa Hatîp Dîcle, parlamenterên serbixwe yên ji doza KCKê girtî ne û bi giştî di warê girtiyên KCKê de encamdana hinek 'pêşketinên pozîtîf'.*

**6.** *Derbarê Kampa Mexmûr de, ku nêzîka 10 hezar kes lê dijîn, 'pêşandana nêteke baş'.*

**7.** *Fikirîna hinek pêngavên di nav demê de ku 'tevlîheviya bêbaweriya'' ku di navbera Enqere û PKKê de heye ji holê rake.*

**Bayram Ayaz**

## Pêdiviya dezgehên netewî û hewldanên li Amedê



Hilbijartina 12ê hezîranê li Tirkiyeyê û Bakurê Kurdistanê bû sedemê bûyerên balkêş. Di pêvajoyên siyasî de mirov nikare pêşî de li ser bûyerên biqewimin hikum bike. Carnan gelek tişt ji derveyê îradeya aktorên siyasî diqewimin û bi aliyekî ve diherikin û diçin.

Niha li Enqerê û Amedê çi dibe? Ji aliyekî bi destê CHPê ergenekoncî û AKPê şerekî nû destpê kirine. Ji aliyê din ve Kurdistanî û dewlet/sistem li bin gohê hevdu ketin. Hinek dixwazin helwestê Kurdan û ergenekoniyan bi hevdu ve girêdin. Wek planekî nîşan bidin. Ev ne rast e. Ergenekonî û AKP di nav sistemê de şerê desthilatê dikin. Kurd û Kurdistanî bi tevayiya sistemê re serê wan di belê de ye. Doza Kurdan doza hebûn û nebûnê ye. Pirsa rengê pêkve jiyanê ye. Şeklî be jî, CHP û ergenekonî man li meclisa xwe ya ku wan bi xwe damezirandiye. Lê em Kurd man li welatê xwe, li bajarê Amedê dicivin. Mijar ewqasî zelal e.

Li gor em rewşê dişopînin, tevgera Bakurê Kurdistanê ji vê yekê re hêj ne amade bû. Lê ev pêvajo bi ser me re gêr bû. Hinek siyasetvan û rayedarên Kurd bi guman in, nizanin gelo wê ev bûyer bi ku derê ve here? Rast e, pêvajo hinekî şêlû ye. Lê bi baweriya me, ev rewşa derketiye holê ji berjewendiya tevgera welatparêz e.

Em van bûyeran wek destpêka qonaxekî nû, destpêka damezirandina dezgehên netewî dinirxînin. Kurdistanî divê li ser axa xwe, xwe bi xurtî organize bikin û dezgehên xwe yên netewî bi rêkûpêk avabikin. Doza Kurdistanê daxwaza mafê çarenûsiyê ye. Yanî xelkê me dixwaze li ser axa xwe, bi zimanê xwe, îdara xwe bike. Ji bo rêvebiriyeka xweser dam û dezgehên temsîlî, dadî û birêvebirî pêwist in. Tevgera siyasî ya Bakur divê ji aliyekî ve li pêkvejiyaneka wekhevî û adil kar bike, lê ji aliyê din ve dezgehên xwe yên netewî xweser ava bike. Bila Konferansa Bakurê Kurdistanê bicive û biryara avakirina dezgehên netewî bide. Sala 1991ê bi damezirandina HEPê tevgera welatparêz navika xwe ji partiyên Enqereyê birî, nuha jî bila gava avakirina dezgehan were avêtin. Kurd û Tirk bi hevra bijîn jî, ku ev daxwaza me ye, cardin jî pêdivî bi avakirina dezgehên netewî heye. Ji bo vê yekê helwestê KCDê/Blokê/BDPê rast e û divê piştevaniya vê helwestê û van hewldanên li bajarê Amedê were kirin.

# ‘Belgeyên me hene ku Hecî Muxlis dixwest pere ji Mela Kirêkar re bişîne’

▶Xwediyê pirtûkxaneya Tefsîr li benda dadgehê ye

▶Mela Kirêkar: Pêwîsti min bi pere tune

▶Kurekî Hecî Muxlis: Me bi destûra hikûmetê pirtûk ji bo Mela Kirêkar çapkirine

**Soran Behaedîn** Hewlêr

Asayîşa Giştî ya Herêma Kurdistanê ragihand belgeyên wan hene ku xwediyê pirtûkxaneya Tefsîr, Hecî Muxlis Yunis ji bo Mela Kirêkat alîkarî komkiriye, loma wan jî ew binçav kiriye. Lê kurên Hecî Muxlis bi hemû şêweyan wê yekê red dikin û dibêjin "di navbera me de tenê xizmayetî heye."

Hecî Muxlis Yunis roja 28ê hezîranê li bajarê Hewlêrê hat binçavkirin. Li destpêkê wisa hat belavkirin ku ew hatiye revandin, lê pişt re Rêveberiya Asayîşa Giştî ya Herêma Kurdistanê li Hewlêrê ragihand ku Hecî Muxlis li cem wan e û wê di van rojan de bê dadgehî kirin.

Pirtûkxaneya Tefsîr an jî buroya Tefsîr ev 16 sal in li Hewlêrê hatiye vekirin. Heta niha bêtirî 300 pirtûkan çapkirine ku gelek pirtûkên olî ne û di nava wan de 3 pirtûkên Emîrê berê yê Ensarûlîslam, Mela Kirêkar jî hene.

Yek ji sê kurên Hecî Muxlis, Emîn behsa girtina bavê xwe kir û got: "Bavê min û karkerekî me li buroyê bûn, 6 kesên bi cilên sivîl hatibûn wir. Li destpêkê wan pirsa pirtûkan kiribû, paşî bi bavê min re axivîn û li dawiyê destê bavê min girtin û ew birin derve. Gotine em Polîsên Nehiştina Tawanê ne. Lê dema em çûn cem polîsên nehiştina tawanê gotin li vir nîne!"

Rûdawê rojekê piştî girtina Hecî Muxlis peywendî bi Asayîşa Giştî û Asayîşa Hewlêrê kir, wan gotin ku haya wan ji girtina wî nîne û wan jî ev nûçe ji malperên înternêtê bihîstine. Di heman rojê de ji aliyê rewşenbîr û rojnamevanan ji bo çarenivîsê Hecî Muxlis kampanya hat dest pê kirin, bêtirî 90 rewşenbîr, rojnamevan, parlamenter û mamosteyên olî îmzeya xwe avêtibûn ser wê daxwazê.

Rêvebirê Giştî yê Asayişa Herêma Kurdistanê li Hewlêrê, Îsmet Ergûşî got, "Hecî Muxlis bi fermana dadwer ji aliyê asayîşê hatiye binçavkirin, lê ne bi navê polîsên nehiştina tawanê. Kesûkarên Hecî Muxlis dikarin parêzerekî bigirin bo roja dadgehê."

Îsmet Ergûşî got, "Hecî Muxlis li xwe mukir hatiye ku bo Mela Kirêkar dirav kom kiriye, belgeyên me jî hene ku wî xwestiye wî diravî ji Mela Kirêkar re bişîne."



Wêne: Rûdaw

**Pirtûkxaneya Tefsîr (jor) pirtûkên olî werdigerîne û çap dike. Li kêlekê: Xwediyê pirtûkxaneyê Hecî Muxlis Yunis.**

### Mela Kirêkar: Wî qet dirav ji min re neşandiye

Li gor yasaya Herêma Kurdistanê ya Dijberiya Terorê, alîkariya "rêxistineke teroristî" yan "kesekî terorîst" ji aliyê darayî dibe tawan û sizayê ji zîndanîkirinê heta sêdaredane li xwe digire. Mela Kirêkar ku niha li Nerwecê dimîne, ji aliyê Dezgehên Ewlekariya Herêma Kurdistanê bi sûcên terorê tê tawanbar kirin.

Mela Kirêkar di daxuyaniyekê de bo Rûdawê bi rêya telefonê ew yek red kir ku xwediyê pirtûkxaneya Tefsîr dirav ji wî re şandibe: "Ti peywendiyeke min bi Muxlis Yunis re tune, ew tenê hevlingê min e." Wî herwiha got "wî qet dirav ji min re neşandiye. Ev derew e û tiştekî xeyalî ye, ji ber ku pêwîstiya min bi diravî nîne, ji xwe eger ez diravî jî kom bikim, pêwîstiya min bi kesekî Kurdistanê tune."

Emîn Muxlis amaje da wê yekê ku ti kesî biryara dadgehê nîşanî wan nedaye ku bavê wî bigirin û got: "Me heta niha nekariye serdana bavê xwe bikin, me hewl da lê gotin hûn niha nikarin."

### Wezareta Rewşenbîrî û Ewqafê destûr daye

Kurê Muxlise ê din Mihemed dibêje: "Ew axaftin ne rast in ku bavê me alîkariya Mela Kirêkar kiriye, me tenê pirtûk bo Mela Kirêkar çapkirine, ew jî ji aliyê Wezareta Rewşenbîrî û Ewqafê destûr jê re hatiye dayîn. Pirtûk jî azad e û ti tiştek li ser tune. Ji bo karê wî pêwîstiyavê bavê min bi xwe bi diravî heye.

Buroya Tefsîr çend pirtûk ji bo Mela Kirêkar çapkirine ku bêtiriya wan pirtûkên wergêranê ne. Yek ji wan pirtûkan bi navê Meşxela Rê ye ku ji aliyê Seyid Qutb hatiye nivîsandin, ew jî yek bû ji serkirdên Birayên Misilman li Misrê û li serdema Cemal Ebdulnasir hat sêdaredan.

Mela Kirêkar ew pirtûk wergerandiye kurdî û berî çend salan ji aliyê Buroya Tefsîr hat çapkirin. Pirtûka dawî jî ku Buroya Tefsîr bo Mela Kirêkat çapkiriye, pirtûka Beleq û Kefkirina Yek Du Gumanên Selefî ku ji aliyê Mihemed Bunête hatiye nivîsandin û Necmedîn Ferec Ehmed (Mela Kirêkat) ew wergerandiye bo kurdî.

### “Qezenca pirtûkên Îslamî tune“

Emîn dibêje wan ji bo çapkirina her pirtûkekê jimareya spardinê ji Pirtûkxaneya Nîştîmanî ya Kurdistanê wergirtiye ku tenê li wir destûra çapkirina pirtûkan li Kurdistanê tê dayîn, wî herwiha got "me di demên cuda de pirtûk bo Mela Kirêkar çapkirine, pirtûka herî dawî jî beriya nêzîkî çar mehan bû. Bi ti awayekî dirav ji vir neçûye Norwec, ji ber ku dema em pirtûkekê çap dikin, em çi qezencê ji pirtûkeke îslamî dikin heta ku em diravî bo nivîskarê wê bişînin?"

Mixlis Yunis Mistefa (62) Peymangeha Pizîşkî ya Fîterneriya Hewlêrê qedandiye, 27 sal in zewiciye û hevlingê Mela Kirêkar e.




Wêne: Rûdaw

Beramber bûyerên Sûriyê

# Kurdên Rojava ji helwêsta Herêma Kurdistanê aciz in

**Rewa Ebdulla** Hewlêr

Ciwan û çalakvanên siyasî û sivîl li Rojavayê Kurdistanê rexneyan li hikûmeta herêmê û serkirdayetiya siyasî ya Kurd digirin ku li beramber rewşa ku Sûriyê tê de derbas dibe "bê helwêst e" û dibêjin: "Ji xeynî ku helwêsta wan nîne, rê jî nadin me li dijî rêjîma Sûriyê xwepêşandanan bikin." Lê serkirdeyekî siyasî, vê bêdengiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê weke karekî "aqilmendî" wesif dike.

Bi baweriya Serdar Murad ku çalakvanekî Kurdê Rojava ye û ji destê rêjîma Beşar Esed reviyaye û niha li Herêma Kurdistanê rûdine, serkirdayetiya siyasî ya Kurd û Hikûmeta Herêma Kurdistanê li himber bûyerên Sûriyê "bê helwêst in" û dibêje: "Ev zêdeyî 3 meh in xwepêşandan li Sûriyê hene û bi hezaran kes hatine kuştin û birîndar bûn, lê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ne ku bi tenê ew kiryarên hovane yên rêjîma Sûriyê şermezar nekir, lê weke tê xwestin rê neda me jî li vir nerazîbûna xwe nîşan bidin."

### 1600 kuştî hene

Ji 15ê Adara îsal şepêleke nerazîbûn û xwepêşandanan piraniya bajarên Sûriyê daye ber xwe. Li gor serjimêriya dawî ya Navenda Sûriyê bo Mafên Mirovan, heya niha zêdeyî 1600 kes hatine kuştin û nêzîka 17 hezar kesan jî penaberî Lubnan û Tirkiyê bûne. Herwiha zêdeyî 10 hezar kes jî bi behaneya beşdarîbûna wan di xwepêşandanan de hatine girtin.

### Piştî 107 rojan dîsa molet dan wan

Roja 27ê Hezîranê bo piştgirîkirina xwepêşanderan û şermezarkirina reftarên rêjîma Sûriyê dijî xwepêşanderan, bi sedan xwendekar û penaberên Kurdên Rojava ku li Herêma Kurdistanê rûdinin, xwepêşandanek li pêşberê baregeha UN li Hewlêrê li dar xistin û slogana rûxandina rêjîma Sûriyê bilind kirin.

Macid Yûsiv ji Rûdawê re ragehand ku ji destpêka bûyerên Sûriyê daxwaza moleta xwepêşandanê ji aliyên berpirs kirine, lê piştî derbasbûna 107 rojan ji nûve molet dan wan.

Navbirî şaşmayîna xwe ji rênedan û bêdengî û bêhelwêstiya berpirsên Kurd li dijî rewşa Sûriyê nîşan da û got: "Li gor me pir ecêb bû ku heya niha Hikûmeta Herêma Kurdistanê li himber serkutkirina hikûmeta Sûriyê bêdeng e û şermezar nake, bi ser de jî heya niha hikûmeta Sûriyê weke dostê xwe dibîne, tevî ku bi awayekî eşkere hikûmeta Sûriyê bênavber ligel Îran û Tirkiyê planan dijî ezmûna Herêma Kurdistanê saz dike."

Hilbijartina pêşber baregeha nûnerên UN li Hewlêrê bo sazkirina xwepêşandanê ji aliyê çalakvanên siyasî yên Sûriyê bi mebest hatibû kirin. Çalakvanê siyasî û yek ji rêkxerên xwepêşandanê Mihemed Emîn Ferho got: "Armanca me ji hilbijartina vî cihî ew bû nameyekê bigihînin nûnerên UN li Hewlêrê da ku bi rêya zextên navdewletî rê li ber kiryarên hovane yên rêjîma Sûriyê de bigirin."

### "Rewşa siyasî ya Herêma Kurdistanê nazik e"

Berovajî ciwan û çalakvanên sivîl ên Rojavayê Kurdistanê, berpirsên partiyên siyasî vê bêdengiya Herêma Kurdistanê weke biryareke `aqilmendî` wesif dikin.

Mihemed Hemo ser bi Bizava Paşerojê, dibêje Hikûmeta Herêma Kurdistanê û serkirdayetiya siyasî ya Kurd karekî aqilmendî dikin ku bêdengî li himber rewşa Sûriyê hilbijartiye: "Bi baweriya min ev helwêsta serkirdayetiya siyasî ya Kurdî li başûr di vê qonaxê de helwêsteke rast e, çimkî li cem me ron e eger Erebên şovenên Sûriyê hest bi her desttêwerdan û alîgiriyeke hikûmeta herêmê di rewşa niha ya Sûriyê de bikin, wê Herêma Kurdistanê bi dabeşkirina Sûriyê tometbar bikin û dijî Kurdan bibin yek, hingî wê rewş aloztir bibe."

Navbirî amaje da ku ew hest bi nazikiya rewşa siyasî ya Herêma Kurdistanê dikin, lewma heya niha wek hêz an partiyeke siyasî, daxwaza moleta xwepêşandanê ji Herêma Kurdistanê nekirine: "Em naxwazin ji ber xwepêşandanekê Herêma Kurdistanê bikeve bin zexta welatên derdorê, lewra dema pêwîst bike xwepêşandanan saz bikin, em ê li welatekî Ewropî bikin."

Endamê Şêwira Yekgirtuya Îslamî ya Kurdistanê Hîwa Mîrza Sabir pêwîst dibîne Herêma Kurdistanê piştgiriya gelên Sûriyê û nemaze gelê Kurd bike: "Pêwîst e hemû hêz û aliyên siyasî yên Kurdistanê û îdareya Herêma Kurdistanê piştgiriya daxwazên wan ên rewa bike. Dibe ku ji ber rewşa niha ya Kurdistanê be, lê bingeheke giştî heye dibêje eger mirov nikare kar bi tevahî bike bila beşekî jê bike, lewma bi baweriya min nîşandana hevsozî û piştgirîkirinê li birayên me yên Kurdên Sûrî erkê herî kêm e. Divê parlamen û Hikûmeta Herêma Kurdistanê eger bo dîrokê be jî, li himber serkutiyên rêjîma Sûriyê daxuyaniyeke nerazîbûnê derxe."

**Ahmet Dere**

## Çalakiya BDPê



Ji hilbijartinên 12ê hezîranê vir ve BDP di nava çalakiya boykotkirina TBMMyê (Parlementoya Tirkiyeyê) de ye. Ev çalakî di demeke pêwîst de û bi rêbazekê di cih de hate dest pê kirin. Betalkirina parlementeriya Hatip Dicle û neazadkirina 5 parlementerên din ên BDPê ji aliyê raya giştî ya Tirkiyeyê ve jî weke neheqiyekê mezin tê dîtin. Lewre çalakiya BDP ji aliyê pir derdoran ve hatiye piştgirî kirin. Mirov dikare bêje ku çalakiya mijara gotinê gihîştiye armanca xwe.

Wateya her çalakiyê di heqî û neheqiya wê de tê dîtin, girîngiya wê jî li wê goranî ye. Dema pêkanîna çalakiyan jî xwediyê girîngiyeke mezin e. Heya niha çalakiya BDPê (divê em HAK-PAR û EMEPê jî jibîr nekin) li ser xetekê rast û di cih de hatiye meşandin. Lê belê, ji bo ku rengê çalakiyê û heqiya wê neguhere, divê rayedarên BDPê rewşa pêvajoyê dîqet bikin û rê nedin guherîna nêzîkatiya li çalakiya wan.

Li gorî ku ez dişopînim, bi taybetî di nava raya giştî ya Tirkiyeyê de, di van rojan de hêdî hêdî zimanê nirxandina heman çalakiyê diguhere. Ez wiha dibînim ku eger heman çalakî neyê bidawî kirin, wê hêdî hêdî helwesta raya giştî li dijî wê pêş bikeve. Lewma, li xweşiya hin kesan neçe jî, ez hêvî dikim ku rayedarên BDPê bi rêbazeke baş dawî li çalakiya xwe bînin û biçin di TBMMyê de bitêkoşin. Piştî çalakiyeke wiha, eger zimanê siyasî baş were bikaranîn, di TBMMyê de hin destkeftiyên baş dikarin werin girtin. Bi rêbazên di cih de koma BDPê wê bikaribe rê li ji nû ve hilbijartina Hatip Dicle vebike û herwiha azadiya 5 parlementerên din jî bidest bixe.

Divê were zanîn ku di 12ê hezîranê de gelê kurd ji namzetên serbixwe re got "Biçin di TBMMê de siyasetê bikin, da ku ji pirsgirêka kurd re rêya çareseriyê vebibe". Eger armanc ne TBMM bûya, çima hewqas ked hate dayîn? Ez bawerim ti rayedarekî BDPê li dijî vê gotinê dernakeve. Herwiha ti kesî nedigot ku wê di TBMMyê de hemû tişt gul û gulîstan be, çi ji aliyê Kurdan ve û çi jî ji aliyê namzetan ve baş dihate zanîn ku di bin baniya yTBMMê de wê pir zehmetî li dijî wan derkevin. Eger ne wiha be, wê demê li vir ji siyasetê tiştek nayê fêm kirin.

Ez bi xwe ne aşiqê TBMMyê me. Eger ji min were pirsîn, dilê min dibêje "Ya baş ew e ku BDP lingê xwe ji Tirkiyeyê bikişîne û hemû xebatên xwe li Amedê bide meşandin." Lê mixabin rewşa heyî li gorî dilê min nameşe, divê ez û herwiha her Kurdekî bi aqil bi çavekî rast li rewşa Tirkiyeyê binêre û li gorî wê bibe xwedî daxwazan. Lewre ya baş ew e ku di demek nêzîk de parlementerên BDPê biçin TBMMyê û li wê derê bitêkoşin. Berdewamiya heman çalakiyê dikare bi xebatên wan serkeftî be.


Wêne: Rûdaw

Serokê Konseya Rêveber ya KCKê, Murat Karayilan:

# Helwêstên Kek Nêçîrvan di vê demê de hem pêwîst û hem guncav dibînim

Serokê Konseya Rêveber ya KCKê (Koma Civakên Kurdistanê) Murat Karayilan, roja 1ê vê mehê di rûniştinekê de ligel çend rojnamevanên Başûrê Kurdistanê li kuntara çiyayê Qendîl, ku Rûdaw jî tê de amade bû, ragehand ku ev 15 roj ji bo wan û Tirkiyê “dîrokî” û “yekalîker in” bo biryardanê, ji ber ku daxwaza wê şanda dewleta Tirkiyeyê ku demeke bênavber gotûbêjan ligel Abdulla Ocalan li zindana Îmralî dike, berî encamdana hilbijartinên Parlementoya Tirkiyeyê di 12.06.2011 de ji aliyê Ocalan hatibû daxwazkirin ku bona çareseriya pirsa Kurd ew `Ocalan` û Serokwezîrê Tirkiyê Receb Teyib Erdogan bi hevre rûnin. Wê demê şandê gotibû ev rûniştin ji ber hestiyariya rewşa hilbijartinan nayê kirin. Di vê bareyê de Karayilan got: “Biryar bû di 15ê hezîranê de bersivê bidin, 14ê Hezîranê şand ligel serok Ocalan rûnişt, bersiveke erênî bi wan re nebû, lê negotin jî Erdogan narûne, gotin derfeteke din bidin me û agirbestê dirêj bikin. Gotina serok jî ji me re ew bû em agirbestê dirêj bikin, daxwaza şandê ew e agirbest heya Îlonê be, lê ew dixwazin demê bikujin û dûre me ji nav bibin.” Di vî alî de Karayilan got ew vê yekê qebûl nakin û eger proseya aştiyê pêşnekeve, wan xwe bo şerekî millî yê şoreşgêr amade kiriye, ku hem gerîlla êrîş dike ser polîsan û kesên ku êrîşî çalakvanên sivîl yên Kurd dikin, hem çalakiyên cemawerî jî berfireh dikin. Karayilan ragehand: “Şandê biryar daye berî 15ê tîrmehê here Îmraliyê, lewma ev 15 roj ji bo biryara me ya nû û dewleta Tirkiyeyê jî pir girîng in.”

Di heman demê de Karayilan şaşmayîna xwe li himber topbarana Îranê bo navçeyên sînorî ragehand û got “nizanim Îran çima wiha dike”, û got jî ku PJAK ev salek dibe çalakiyên xwe yên çekdarî dijî Îranê sekinandine.Karayilan herwiha diyar kir ku ew nabin beşek ji şerê alî û dewletan dijî Îranê, lê Îran navçeyên Başûrê Kurdistanê topbaran dike. Karayilan da zanîn ku berî 3 rojan hêzên Îranê li rexê sînorê Başûrê Kurdistanê kemînek bo hêzên gerîllayên wan avêt, û di encamê de gerîllayekî bi navê Guevara ku ji Kerkûkê bû, jiyana xwe ji dest da.

Piştî bidawîhatina rûniştina vekirî ya Karayilan ligel rojnamevanan, Rûdawê ev hevpeyvîna taybet ligel Karayilan saz kir:

**Rûdaw: PKK û PDK xwediyê bandoreke mezin in li ser meydana Rojavayê Kurdistanê. Hûn weke PKK ligel wê yekê ne Kurd bi dirûşma 'here' dijî rêjîma Beşar Esed tevî xwepêşandanan bibin?**

**Murat Karayilan:** Na. Divê ev helwêsta herî dawî be. Divê Kurd li Rojavayê Kurdistanê yekîtiya xwe dirust bikin û li ser bingehê proseya Sûriyeke demokratîk û Kurd xweser û xwedî statuyeke siyasî, daxwaza çareseriyê bikin. Eger desthilata niha ya Sûriyê ciddî ye û bo wê amade be û bi pratîkî pêngavan bavêje, pêwîst e Kurd jî piştgiriya vê proseyê bikin. Lê divê xwe tenê bi desthilatê ve mijûl nekin, lê divê di heman demê de pêwendiyên wan ligel opozisyona Sûriyê jî hebin, deriyê wan ligel wan jî vekirî be û li ser heman proseyê gotûbêjan ligel wan jî bikin. Kurd neteweya herî zerermend e li Sûriyê, lewra divê siyaseteke rast birêve bibin û bi germî xwe nedin pêş. Divê Kurd ji diyaloga ligel desthilat û opozisyona Sûriyê jî vekirî bin. Herwiha nabe Kurd pasîv bin, divê projeyê wan zelal be, û kîjan alî pirsa Kurd çareser bike û Sûriyê bike demokratîk, divê Kurd pêre bin.

- **Em niha di qonaxa fînal de ne**
- **Divê deriyê Kurdan himber desthilat û opozisyona Sûriyê vekirî be**
- **Eger Tirkiye nasîna nasnameya Kurdî û otonomiyê qebûl neke em ne neçar in îlla bi Tirkiyeyê re bijîn**

## Mîna Baas a Saddam

**Navê dewleta Sûriyê ‘Komara Erebî ya Sûriyê’ ye. Hûn weke PKK Sûriyê nas dikin, hûn di wê baweriyê de ne ku rêjîma Sûriyê reforman bike û wiha bike Kurdên Rojavayê Kurdistanê rehet bin?**

Bêguman ew jî di zehmetiyê de ne, her kes divê bizane Sûriye weke berê namîne. Navê komara Sûriyê di serdema Baasiyan de paşgirê ‘Erebî’ hat pêvekirin. Li Sûriyê gelek netew û çand hene, her çiqasî piranî Ereb e. Pêwîst e mirov pişta xwe bi xebata xwe girêbide, lê divê desthilatdarên Sûriyê jî têbigihin ku weke berê nabe û divê pêngavan bavêjin. Min ji wan re got eger Saddam ligel Kurdan li hev bikira û hinek pêngavên demokratîk li Îraqê bavêtana, dawiya Saddam wisa nedibû. Divê niha desthilata Sûriyê jî vê mînaka Saddam li ber çav bigire. Eger vêga Beşar Esed bi Kurdan re li hev bike û reforman bike û pêngavên demokratîk bavêje dikare desthilata xwe biparêze, eger wiha neke nikare desthilata xwe biparêze.

**Bi raya hinek çavdêran ji ber `buhara Ereban` Amerîka bêtir pêdiviya wê bi Tirkiyeyê li navçeyê heye, ew jî nûnertiya Amerîka li vê navçeyê dike, bi ser de jî di gelek xwepêşandanên gelan de ala Tirkiyeyê tê bilindkirin. Herwiha zextên Yekîtiya Ewropayê (YE) li ser Tirkiyeyê ji bo cîbicîkirina bingehên mafên mirovan û parastina mafên gelê Kurd nemane, ji ber bêhêvîbûna herdu aliyan ji wergirtina Tirkiyeyê weke endam di YE de. Lewra jî zext li ser Tirkiyeyê nemane û dibe ku guherînên bingehînî di destûrê Tirkiyeyê de neyên kirin. Raya we çi ye?**

Mirov nikare xwe bispêre merhemeta kesî û baweriyê pê bike. Eger em xwe xurt bikin û berbi vebûn û demokrasiyeke zêdetir gavan bavêjin, em ê hemû tiştî bicîh bînin. Eger gelê Tirk û gelên din yên Tirkiyeyê karê xwe yê demokratîk xurt nekin, AKPya ku ji sedî 50ê dengan bidestve aniye, xema wê yekê naxwe demokrasiyê dirust bike. Lê pêşketinên Rojhilata Navîn û Kurdistanê guherînên zêde li Tirkiyeyê tînin pêş. Eger Tirkiye pirsa Kurd çareser neke û vegere ser redkirina hebûna pirsa Kurd, Kurd jî ne bê çare ne, lê alternatîvên me jî hene. Ger Kurd li Bakur û parçeyên din hêza xwe bi başî bikar bînin, wê demê guherînan li ser wan ferz dikin. Eger li gor mejiyê wan be wisa dibe: ew jî birayên me ne, rast e bi kurdî dipeyvin, lê ew jî Tirk in. Polîtîka wan wisa ye, lê îradeya me jî heye û em vê çendê qebûl nakin. Di hilbijartinên 12.06.2011 de gelê Kurd dengê xwe da ‘Otonomiya Demokratîk’ û ‘Komara Demokratîk’. Eger hinek vê polîtîka Tirkiyeyê qebûl bikin, em wekî Kurd vê yekê qebûl nakin. Em tenê dikarin bi naskirina nasnameya Kurdî û otonomiyê bi hevre bijîn. Eger na wê demê em ê jî li çareseriyên din bigerin, em ne neçar in îlla ligel Tirkiyeyê bijîn. Em dikarin ligel Tirkiyeke azad û wekhev bijîn û ji vê re amade ne, lê belê zordariyê li me bikin û bêjin em birayên hev in, em nikarin ligel Tirkiyeke wisa bijîn. Kurdan ku çendîn sal in eva qebûl nekirine, vêga jî qet vê yekê qebûl nakin.

## Partîbûna Blokê

**Komara Tirkiyeyê ji 1924ê ve zimanê kurdî û zimanê neteweyên din jî qedexe kir, bi ser de jî demekê banga nimêjê jî ji erebî kir tirkî. Hûn vêga ku bi wê yekê diramin di dewsa BDPê de partiyeke din ya berfirehtir, li ser bingeha Bereya Ked û Azadiyê, bê dirustkirin, hûn dixwazin gelên Ereb, Tirkmen, Ermen û hwd. tê de beşdar bin?**

Piştî avakirina Komara Tirkiyeyê, hinek gel li derve hatin hiştin, weke Kurd û çepê Tirk. Ew di dirustkirina komarê de, di 1921ê de, beşdar bûn, lê di 1924ê de li derve hatin hiştin. Herwiha rêbaza muhafezekar a olî jî ji piştî 1925ê li derve hat hiştin, lê dûre hêdî hêdî çûn ser desthilatê. Vêga du hêz Tirkiyeyê rêvedibin: neteweperest û muhafezekar. Vêga ku AKP weke konservatîv li ser desthilatê ye, CHP jî di nav dezgeh û saziyên komarê de ye. Em bi wê yekê diramin ku blok û bereya ku tevî hilbijartinê bû, ji niha şûnde jî berdewam be. Pêwîst e cara yekê hemû hêzên Kurdî lixwe bigire, ku niha piraniya wan tê de ne, lê divê hemû aliyên Kurdî yên Bakurê Kurdistanê tê de bin. Piştre divê çepê Tirk jî tê de be, yanî nûnertiya neteweya demokratîk bike, ku neteweyeke pirziman û pirnasname ye. Lewma divê neteweyên niştecihên Kurdistanê:


Wêne: Rûdaw

Ereb, Tirkmen, Tatar, Azerî, Ermen û Aşûriyan lixwe bigire. Her çiqasî PKKê partiyeke înternasyonal e û rêbaza neteweperestiyê peyrew nake û bo hemû neteweyan vekirî bûye, lê belê li hundirê Bakurê Kurdistanê bi awayekî giştî û pratîkî muxataba Kurdan kiriye, weke pêwîst me pêşwazî li neteweyên din nekiriye. Herwiha di warê polîtîka mezhebî de derbarê bandora wê li ser Elewiyan bi tevahî pratîk nekirine, evana jî cihê rexnê ne û li vir em xwe rexne dikin. Ev li parçeyên Kurdistanê yên din jî heye, weke mînak em dibêjin bajarê Wanê bajarekî Kurdî ye, lê zêdeyî ji sedî 20ê wê ne Kurd in, lê ew jî hevwelatiyên me ne û pêwîst e em wan jî hembêz bikin. Li Mêrdînê pêwîst e em Ereban hembêz bikin. Lewma em dibînin li ku Mêrdînê Bloka Ked û Azadiyê ji sedî 62ê dengan anî, ji ber ku Ereban dengên xwe nedanê. Eger tenê Kurdên Mêrdînê werbigirî, ji sedî 90ê Kurdan dengên xwe danê. Vêga ev pirs li pêş me ye û pêwîst e ji niha şûnde siyaseta me hemû kesî lixwe bigire. Ew bloka berî hilbijartinan ji 17 aliyan dirust bûbû, pêwîst e bibe hizb.

### Lihevkirina li ser hesabê Kurdan

**Di hilbijartinên 1991ê de we hevbendî ligel SHPê girêda, ku niha bûye CHP. Hûn ji bo pêşerojê ti hisaban li ser CHPê dikin ku alîkariya çareseriya pirsa Kurd bike?**

Pêwîst e zêdetir li guherînên dawî yên CHPê bikolin. Berê çarçoveya siyaseta wê bi tevahî nijadperestî bû, ne ku tenê dijî pirsa Kurd, lê dijî gotûbêjkirina wê jî bû. Lê piştî guherîna serokayetiya wê hinek nermî pêşan da, di dema kampanyayên hilbijartinê de hinek peyamên nerm li ser çareseriya pirsa Kurd dan, bi ser de jî AKPê ew peyam li dijî wê bikar anîn, nemaze peyamên Kiliçdaroglu derbarê otonomiyê de. AKPê jê re got hûn çi dibêjin, hûn dixwazin welat parçe bikin. Ev axaftin ji bo eşkerekirina rûyê AKPê jî baş bûn. Pir kesan digot AKP ne zêde neteweperest e û bi germî nêzîkî meseleya Kurdî dibe, lê belê niha kumê wan ket û eşkere bû ku ewê niha li Kurdistanê dagîrkeriyê diparêze AKP bi xwe ye, lê rêyên olî bikar tîne da ku Kurdan ji Kurdan bidize. [...] Metirsiyeke din jî heye, ew jî ew e ku ji xênî 6 parlamenterên girtî yên BDPê, du parlamenterên CHP û yekî MHPê jî di zindanê de ne û nehatine azadkirin û nahêlin ew herin parlementoyê. Bi dîtina min, ev siyaset tenê ji bo girtina rê li ber parlementerên BDPê tê meşandin û ewên din tenê weke sîwanekê ji bo veşartina vê siyasetê bikar tînin; eger tenê parlementerên BDPê bûna wê cîhanê bigota Tirkiye cudakariyê dike, lê ji ber hersê girtiyên din ev yek nayê gotin. Li ser vêya jî vêga aloziyek di navbera CHP û AKPê de heye. Lê bi baweriya me hêjî CHP û AKP partiyên sîstemê ne û gumana wê yekê heye ku di nivîsîna destûrê de herdu bi hevre dijî pirsa Kurd lihev bikin.

**Bi baweriya we, eger CHP û AKPê lihev bikin jî, Tirkiyê dikare destûreke berovajî xwestekên gelê Kurd biçesipîne û li pêş çavê cîhanê bê xwesteka Kurdan rewatiyê pê bide?**

Dibe. Lewra jî divê em pir bi dîqet bin. Divê weke civak em bizanin ku qonaxa niha qonaxeke dîrokî ya pir giring e, niha derfeta çareserkirina pirsa Kurd heye. Eger AKP careke din siyaseta çewisandina Kurdan bîne pêş, divê fêm bikin ku ew dixwazin vê derfeta baş di ser me re derbas bikin û piştre me seranser têk bidin. Pêwîst e em rê nedin vê yekê û ev metirsî li ber çavê me be. Rast e, gelê me niha tahamûla wêya nake gerîllayek jî şehîd bibe, em baş vê yekê dizanin, lê azadî giran e û Kurdan heya vêga gelek qurbanî jê re dane. Lê eger ji niha şûnde jî pêwîst bike divê dîsa bide, ji ber em niha di qonaxa final de ne. Da ku mirov di qonaxa final de biserkeve divê metirsiya wê jî li ber çav bigire. Em wisa dibînin ku niha di finalê de ne û divê berdewam bin di rêya xwe de, divê bona aştiyê hemû hewldanan bikin, lê belê ger deriyê wê bê girtin em êdî bêçareseriyê qebûl nakin, ji ber ku niha demeke zêrîn e bo çareserkirina pirsa Kurd. Eger ev derfet ji destê me here dibe ku destkeftên Bakur û parçeyên din yên Kurdistanê jî ji dest herin, dolab serobin bibe û proseyeke dijwar û trajîdiyayeke nû pêsîra Kurdan bigire. Metirsiyeke wisa heye û divê em hişyar bin.

**Di rûniştinê de te got “Em ne xeşîm in bi vî rengî çekan deynin”, lê pir caran gelek kes dibêjin da ku zemîna çareseriyê berfireh bibe divê PKK dest ji çekan berde.**

Ew gotina dibejê dest ji çek berdin da ku çareserî bê, gotineke vala û xeyalî ye. Ji ber hêza kê hebe ew dikare çareseriyê bipêşve bibe. Em niha nabêjin tenê bi rêya çek encamekê bidest dixin, lê bi çekan em bingehên xwe, destkeftên xwe û rûmeta xwe diparêzin û xwe li ser xaka xwe bi vîn dikin. Em nabêjin tenê bi çekan, lê bi xebata rêxistinkirî û cemawerî. Îro şîdeta herî bibandor şîdeta cemawerî û siyasî ye, çalakiya sedên hezar kesa ye. Divê em van şêwazan hemûyan bipêş bixin. Ji wan kesên ku wisa ji me re dibêjin, em ji wan re dibêjin ’mejiyên xwe têxin serên xwe, weke mînak eger em dev ji çekan berdin, kes nayê silavekê jî li me nake’, mebesta min ji ’me’ gelê Kurd bi giştî ye. Eger hêza me nebe kes giringiyê nade siyasetvanên Kurd li Bakurê Kurdistanê, herwiha eger hêza me nebe dewleta Tirkiye bi wê hesta xwe ya şoven merheba nade Başûrê Kurdistanê jî. Ji 1999-2004ê, gava me agirbest kir û li Bakurê Kurdistanê şer nema, Tirkiye xwe zêde ji Başûrê Kurdistanê dûr kir û merheba jî lê nekir, lê piştî destana Zabê, gava dîtin nikarin tenê tiştekî bikin, hêlên sor ji ser Başûr rakirin, lê ne ku bi kêfa xwe, belê bi neçarî rakirin. Rastiya vê cîhanê wisa ye ku hêz tê de bingeh e.

**• Emê bloka hilbijartinê ji dêvla BDPê bikin partiyeke berfirehtir**

**• Em alîgirên aramiya Başûrê Kurdistanê ne û di dema xwepêşandanan de me aramî parast**

**• Di dîzayna nû ya Rojhilata Navîn de cihê Kurdistanê jî heye**

### Pêdiviya konferansa netewî

**Çawa berê xwe didin daxuyaniyên vê dawiyê yên Cîgirê Serokê PDKê Nêçîrvan Barzanî derbarê wê ya ku gok li meydana Tirkiyeyê ye û divê gavan bavêje û ligel PKKê rûne û rewşa Abdulla Ocalan baş bike?**

Em helwêsteke wiha, di demeke wisa giring de, ji hemû hêzên Kurdî hêvî dikin. Ji ber ku em vê yekê baş dibînin û eger Tirkiye ji Kurdan bi xwe bêhêvî bibe, neçar dibe bê ser hêla çareseriyê, lewra jî hêzên Kurdî yên hemû parçên Kurdistanê xwediyê hêzeke bi vî rengî bin, hevdengiyê nîşan bidin û ji bo çareseriyê rastiyan bêjin. Di vê çarçoveyê de ez helwêsta herî dawî ya kek Nêçîrvan di hevpeyvîna rojnamevan Hasan Cemal de weke helwesteke pir erênî dibînim, helwesteke baş e. Pêwîst e em Kurd hemû ji Tirkiye re bêjin divê vê pirsê çareser bike, pirsê jî ligel xwediyê pirsê gotûbêj bike, çimkî çareserî bi vî rengî dibe. Destnîşankirina vêya li gor min tiştekî pir hêja ye. Vêga derfetên erênî derketine. Li Bakurê Kurdistanê tevî hemû zext û zordariyan û bikaranîna pere û olê, piraniya Kurdan bûne yek. Berê nexweşî di navbera parçên Kurdistanê de hebû, ew jî çewtî ne, di dîrokê de mane û dibe ku rojekê wan gengeşe jî bikin, nabe wan binuximînin lê vêga pêwîst nake. Lê belê di van çend salên dawî de hemû kesî hewl da ku ev nemîne û niha em berbi siyaseteke netewî diçin. Niha jî pêdiviya me bi konferansekî netewî heye, ev jî nîşana wê yekê ye ku gelê Kurd jî dibe xwedî vîn û siyaseteke hevdeng û yek hêz û yek siyasetê. Divê hemû dagîrker jî wêya bibînin û bizanin kes nikare bi Kurdan bilîze û divê bi awayekî rasttir nêzîkî pirsa Kurd bibin. Lewra jî ez helwêstên weke ya kek Nêçîrvan di vê demê de hem pêwîst dibînim, hem jî di cihê xwe de dibînim.

**Piştî xwenîşandanên Silêmaniyê, civînên navbera desthilat û opozisyonê li Herêma Kurdistanê destpê kirin û didomin. Hûn çawa li van civînan dinerin, ku weke we got we her du alî dehif dan bo diyalogê di dema xwepêşandanan de?**

Ji roja destpêkirina xwepêşandanan di Sibatê de heya îro siyaseta me çawa bû, vêga jî wisa ye. Helwesta me netewî ye, hêzeke me ya siyasî û medyatîk heye, eger me piştgiriya alîkî bikira bêguman wê bandor li ser rewşê bikira, lê me got rast e li wî parçeyê Kurdistanê pêwîstiyên demokratîk hene, gel daxwaza azadiyên zêdetir dike û divê mirov vê li ber çav bigire û ev tişt maqûl in, lê berî her tiştî divê bi rêya diyalogê û rêyên demokratîk û siyasî bê kirin, ji bo Başûrê Kurdistanê aramî pêwîst e.

**Vêga “Buhara Ereban” destpê kiriye. Bi dîtina çavdêran ev serhildan ji hemû gelên bindest weke Kurdan re pir sûdmend in. Divê Kurd çawa sûd ji vê derfetê werbigirin?**

Serhildana gelan, nemaze serhildana gel, weke serkêşiyeke dijî desthilata ne demokratîk e. Sîstema ku li vê navçeyê jî ji aliyê Rojava hatiye danîn, gel himber vê yekê derketiye. Lê dîsa hêzên Rojava destên xwe xistin nav û xwestin li gor xwe birêve bibin, da ku sîstema xwe li deverê nû bikin, da ku ev serhildan bi rastî nebin buhar, bibin payîz, nebin şoreş û bibin resterasyon. Di van hewldanan de jî dest bi lêdana kesên ku ji wan nerehet in, weke Qeddafî, kirin. Vê yekê hinekî serhildan herifandin. Weke diyar e li Misirê gihişt wê qonaxê, lê çanda demokrasiyê zû cihgîr nabe, li hinek cihan bidawî tê. Lê êdî Rojhilata Navîn wek berê nabe, lewma jî mirov dikare bêje ev destpêka guherînê ye, dibe ku di hinek qonaxên din de jî derbas bibe da bibe buhar. Duyemîn, Kurdistan jî weke berê bindest namîne, di dîzayna nû ya Rojhilata Navîn de cihê Kurdistanê jî heye. Çimkî niha Kurd jî hêzek in û xwedî destkeft in.

**Divê hemû dagîrker jî wêya bibînin û bizanin kes nikare bi Kurdan bilîze û divê bi awayekî rasttir nêzîkî pirsa Kurd bibin. Lewra jî ez helwêstên weke ya kek Nêçîrvan di vê demê de hem pêwîst dibînim, hem jî di cihê xwe de dibînim.**



Wêne: Rûdaw

# FC Firat Bergen tûrnova qezenc kir


Wêne: Rûdaw

**Bergen (Rûdaw) -** Turnovaya futbolê ya Kurdên êzîdî ku di 02.07.2011ê de li bajarê Almanya Bergen pêk hat, bi serketina tîma FC Firat Bergen bi encam bû. Di lîstika fînalê de FC Firat Bergen bi penaltiyan bi 6:3 li hemberî SV Ciwan Walsrode bi ser ket.

Tûrnovaya îsal weke berdewama rêzeçalakiyên ku ji aliyê Komisyona Ciwanên Êzîdî tên li dar xistin, hat amadekirin û îsal ji bo bîranînê li ser navê keça êzîdî Behiye Yaşit (Hacer) bû. Sala borî jî tûrnovayek di heman çarçoveyê de li bajarê Celle hatibû li dar xistin. Îsal pênc tîmên futbolê ji bakurê Almanyayê tevlî tûrnovayê bûn. Tevî rewşa hewayê na nexweş û ba û baranê, moralê lîstikvan û temaşevanan bilind bû û maç bi performansên gelekî baş hatin lîstin. Xeyredîn Açlan ku yek ji amadekarên tûrnovayê bû û di heman demê de serokê 2. yê tîma serketî FC Firat Bergen e, bi rêveçûna tûrnovayê gelekî kêfxweş bû, lê ji helwest û nêzîkatiya ne profesyonel a hinek tîmên ku hatibûn dawetkirin lê tevlî tûrnovayê nebûn, matmayîbûna xwe nîşan da. Tevî ku 8 tîm ji bo tûrnovayê hatibûn vexwendin û hemuyan diyar kiribûn ku wê beşdarî tûrnovayê bibin, lê tîmên FC Rojhilat, Inter 07 Celle û Inter 08 Burgdorf bêyî diyarkirina ti sedeman roja tûrnovayê ji çalakiyê dûr man. Xeyredîn Açlan di vê bareyê de got: "Bêguman ev helwestek ne erênî ye û em ê li ser vê yekê bi wan tîman re biaxivin û di salên pêş de em ê vê helwesta wan tîman li ber çav bigirin."

Bi dayîna pokalan di çendîn kategoriyan de tûrnova bi dawî bû. Ji bilî tîma serketî FC Firat Bergen, SV Ciwan Walsrode jî wekî tîmê herî centilmen (fairplay) hat xelatkirin.


Wêne: Rûdaw

**Şêx Cindiyê 75 salî yek ji hezkiriyên tîma FC Firat Bergen e: "Ez gelekî ji fûtbolê hez dikim û eger min bi xwe re bibin, ez ê bi wan re herim lîstikên wan ên deplasman, yanî lîstikên li derve jî."**



**Van her du fûtbolhezan bi xwarinên xweş dilê lîstikvan û temaşevanan xweş kirin.**


Wêne: Rûdaw

**Fatih Yavsan ji tîma FC Firat Bergen bi 7 golan lîstikvanê herî serketî yê tûrnovayê bû.**

## Zarokên Bursayê têk birin!

**Bawer Çem Amed**

Tîmên basketbolê yên zarokan ên keç û kuran bi serkeftina xwe Kurd serbilind kirin. Tîma kuran di lîgê de bû 2'yemîn û ya keçan jî bû 4'emîna Tirkiyeyê.

Peşbirka Lîga Basketbolê ya Zarokan di navbera 29.06-03.07 de li Nevşehîra Tirkiyeyê pêk hat. Ji 48 bajaran ji bo zarokên basketbolê peşbirkek hate lidarxistin. Tîma Basketbolê ya Zarokan a Şaredariya Baglara Amedê, di nava van tîman de ked û xwêdaneke hêja rijand û Tîma Basketbolê ya Kuran a Tofaşa Bursayê 34-33 têk bir. Tîma kuran a zarokên kurd bû 2'emîna Tirkiyeyê.

### Keçikên kurd jî bûn 4'emîn

Di peşbirka ku 18 tîmên keç tevli bûn de jî, Tîma Keçan a Basketbolê ya Şaredariya Baglarê li hemberî Tîma Basketbolê ya Adapazariya Sakaryayê 30-6 bi ser ket û ferqeke mezin avêt. Tîma zarokên kurd bi vê serkeftin û encamê bûn 4'emîna Tirkiyeyê.

Antrenora Tîma Basketbola Zarokan a Şaredariya Baglarê Esra Artakul diyar kir ku ew demeke dirêj e ji bo serkeftina van zarokan xebatên pir girîng dimeşînin û ev serkeftin encama performansa wan e. Atakul destnîşan kir ku ev serkeftina xebata ekîbê ye û keda gelek antrenor û aktîvîstan di vê encamê de heye. Atakul da zanîn ku ji ber zarokên wan zarokên Bursayê têk biriye, gelek kêfxweş in û ev serkeftineke watedar e.

Hêjayî gotinê ye ku di Lîga Futbolê ya Super a Tirkiyeyê de, di maça Bursaspor û Diyarbakirsporê de şer derketibû û piştî maça Bursasporê, derbarê Diyarbakirsporê de biryarên gelek xelet û bi alî hatibûn wergirtin. Ji ber vê yekê jî Diyarbakirsporê gelek ceza xwaribû û careke din Diyarbakirspor nekarî xwe topî ser hev bike.




Wêne: Rûdaw

# "Tîma me bi dilekî kurdî û aqilekî ewropî kar dike"

Derhêner û prodokturê sinemayê Mehmet Aktaş piştî hejmarek mezin filmên belgeyî û bernameyên televizyonî kişand, niha bi projeyek sînemayê ya navdewletî re mijûl e. Fîlmê ku bi tîmeke ewropî tê amadekirin çîroka xort û keceke Kurd tîne ser perdeya spî. Aktaş ji Rûdawê re behsa projeya xwe ya dawî, rewşa sînemaya kurdî û projeyên xwe yên dahatû kir.



Wêne: Rûdaw



Wêne: Rûdaw

Derhêner, aktor, prodoktur û kameramanê filmê Rêya Siyar.

**Rûdaw: Derhênerê filmê 'Rêya Siyar' kî ye? We kengî dest bi vê projeyê kiriye?**

**Mehmet Aktaş:** Ev nêzîkî 4 sal in proje di destê me de ye, destpêkê wek nivîskar tevlî projeyê bûm, piştre şirketa me Mîtosfilm ligel şirketek norwêcî biryar da vê senaryoyê bike film. Rêya Siyar berhemeke ji Norwêc, Almanya û Başûrê Kurdistanê ye. Derhêner Hîşam Ziman bi xwe ji Kerkûkê ye, li Norwêcê mezin bûye. Sala çûyî me li Duhok û Amediyê hin dîmenên film kişandin. Lê çîroka fîlm li 5 welatan derbas dibe: Kurdistan, Tirkiye, Yewnanîstan, Almanya û Norwêc. Ne tenê cih, lê demsal jî roleke dilîze di karê me de. Payîzê jî em ê 3 rojan li Norwêcê bikşînin û kişandina film xilas dibe.

**Tîma we çawa ye?**

Tîma me ji Kurd û Ewropiyan pêk tê. Bo cara yekemîn filmekî kurdî bi tîmek wisa rengîn tê kişandin. Kameramanê me norwêcî, artdesigner fransî, kostum jineke alman, herwiha Kurdên her çar parçeyan jî hene di tîma pişt kamerayê de. Dema me li Başûr destpê kir me dixwest em tecrubeyek nû bibin Kurdistanê. Çûnkî filmên kurdî yên li Kurdistanê tên kişandin, tîmên wan 80-90% ji Îranê tên. Me tîmek ewropî bir Kurdistanê.

**We alîkarîya aborî ji kû wergirt?**

Fînansa serekî ya fîlm ji hukumeta Norwêcê hat. Wan nêzîkî milyonek €uro piştgirî dan. Wezîrê Rewşenbîriyê Norwêcî pir girîngî da film. Derhênerê me Hîşam Zaman gelek tê naskirin li wir. Nivîsîngeha Nêçîrvan Barzanî bi rêya kak Abbas Xezalî alîkarî da me û li Duhokê rêvebirê giştî yê rewşenbîrî Adil Hesen birastî gelek alîkarî da me. Dema kişandina film hertim ew li gel me bû. Herwiha birêz Temir Remezan waliyê Duhokê û li amediyê Mehmed Muhsin û Parêzer Mehmet Salih.

**Mijara film çi ye?**

Karaketên çîrokê du ciwan in; xortek ji Amediyê û keçek ji Diyarbekirê ku li Sttanbolê dijî. Çîroka du ciwanên di navbera zarokatî û xortaniyê de, çîroka Evîn û Siyar e. Her yek ji wan li pey armancekê, lê herdu dikevin ser rêya Ewropayê, bi rêyên qaçax. Mijarek civakî ye, bi backgroundek rewşa Kurdên Bakur, Başûr û Ewropa dinirxîne. Ji bo peyda kirina van herdu ciwanan me kastingek nêzîkî 3000 kesî çêkirin. Lêgerîna lîstikvanan nêzîkî sal û nîvê dirêj kir. Hîşam Zeman dixwest bêhtir bi aktorên amator re kar bike ji bo baweriya film. Wek Bîrol Oner, Billy Demirtaş, ev herdu li Almanya du lîstikvanên navdar in. Lîstikvanên kurd Nazmî Kirik, Ahmad Zîrek û li Turkiyê aktorên wek Volga Sorgu.

**Çi astengî di pêşiya we de derketin?**

Atengiya herî mezin ku li Başûr ji me re deket peyda kirina aktera jin bû. Gelek caran me lîstikvanek jin peyda dikir lê malbatê nedihişt. Lê dawî em mecbûr man em jinekê ji Ewropa bibin.

Kişandina film pir dirêj kir, astengiyên aborî derketin. Ji ber ku film roadmovie ye û li 5 welatan tê kişandin plansaziya me şaş derket, em derketin ser budceya xwe. Mîtosfilm niha mecbûr e bi imkanên xwe yên taybet vî filmî bi dawî bike.

**Fîlmê Rêya Siyar serê sala 2012 bi dawî dibe û Aktaş hêvî dike ku film tevlî Berlinale bibe**

**Mitosfilm niha gihaye kû?**

Ev yek divê kesên li derveyî Mitosfîlm bêjin. Ekîba me tecrûbeyek profesyonel a berhemanîn û belavkirina film bi dest xist. Hêvîdar im alîkariya me gihiştibe sînemaya kurdî. Mîtosfilm şirketek almanî ye, me dixwest em tecrubeya xwe bêhtir li Kurdistanê bi kar bînin. Bernameya me ya 10 salan heye. Ka em binêrin sal û zeman çî derdixin pêşiya me.

**Pirsgirêkeke we nîne ku dezgehên kurd we wekî fîrmayek alman dibînin, û Alman jî we wek Kurd dibînin?**

Na, tîma me bi dilekî Kurdî û aqilekî Ewropî kar dike. Ji ber ku bazara navxweyî niha nîne, em bûne parçeyeke Sînemaya cîhanî. Bêhtir berê me li bazara Ewropî ye. Hewidar im li Kurdistanê li kêleka her mizgeftekê holek sînemayê jî vebê.

**Niha li gel kîjan derhêneran projeyên we hene?**

Ez bi hemû derhênerên Kurd re diaxivim. Belê yên ez niha dikarim navên wan bêjim, projeyek nîv belgeyî li ser ser jiyana Yilmaz Guney heye ku derhênerîya wî Huseyin Tabak dike. Projeyek me heye, li gel derhêner Şewket Emîn û projeyek me ya din li ser Kurdên Sûriyê heye. Ez ê tenê navê wê bêjim "Happy birthday my president"

**Hûn rewşa sînemaya Kurdên Başûr çawa dibînin?**

Mirov dikare bi reheti bêje Kurd di sinemaye de serkeftî ne. Di demek kin de di festîvalên navdewletî de filmên Kurdî serkeftinên mezin bi des xistin.

Lê belê di sînemaya kurdî de bê ser û beriyek heye. Lê hêviyek jî heye. Hemû tişt bêpîvan û bê standart in. Mînak Wezareta Rewşenbîrî li Hewlerê hemû derhênerên kurd bi çavekî temaşe dike. Piştgirya aborî bê qaide û qanûn tê dayin.

**Bi baweriya te pirsgirêkên sînemaya kurdî çawa çareser dibin?**

Mînaka herî baş a sînemayê ji bo kurda tecruba Îsrailê ye. Ew ji welatên cuda, tecrubeyên cuda hatin û li welatê xwe bingehek sinema ya nû çêkirin. Di nav me de jî kes hene ji Îranê, Rûsyayê an ji Ewropa sînema fêrbûne. Divê Koferansek Sînemaya Kurdî di demek herî nêz de bê li dar xistin. Bila sînemagerên welat û yên diyaspora tecrubeyên xwe bigihînin hevdû. Em hindek pîvan û standart deynin. Pêwîst e reş û spî ji hevdû bê cudakirin. Ev yek dikare bibe gava yekemîn ji bo bazarek navxweyî û karên taybet.

**Mehmet Aktaş kî ye?**

Mehmet Aktaş di sala 1966ê de li Îdirê hatiye dinyayê. Li Stenbolê fakulteya huqûqê xwend. Lê berê xwe da karê medyayê û wî wek rojnamevan ji bo hin kovarên nûçeyî yên tirkî û dûvre mîna rojnameya Yeni Ulke û Ozgur Gundem re kar kir. Di sala 1992 de wî di filmê Xecê û Siyabend de kar kir û piştî du salan hat Almanyayê.

Aktaş di MedTV de bernameya Ronahî amade dikir. Belgefilmê wî Kofî û Karapetê Xaço li gelek Festîvalên Navdewletî hate nîşandan. Di sala 2000î de kete nav karên sînemayê. Piştî damezrandina Mîtosfilm wî yekemîn festîvala Filmên Kurdî li Berlînê li dar xist. Aktaş bi xebata xwe ya 10 salên dawî de li gel gelek derhênerên kurd kar kiriye: Wek Bahman Gubadî, Huner Selîm, Hîşam Zeman,Şewket Emîn Korkî, Yuksel Yavûz, Rehîm Zebîhî, Husên Tabak, û hinek derhênerên alman.

*Hevpeyvîn: Hîm Mela Ehmed*

# Pisporên alman û tirk neştergeriya medyaya tirk kirin

▶Çalişlar: Kes behsa rojnamevanên Kurd ên girtî nake.

▶Babahan: Îro li Tirkiyeyê hemû mijar bi şêweyek eşkere tên axaftin.

▶Steinbach: Divê bi lezgînî paragrafa 311 ya ku mafên tirkitiyê diparêze ji holê bê rakirin.



Wêne: Rûdaw

Nivîskarê Starê Ergun Babahan û nivîskarê Radikalê Oral Çalişlar

**Munchen (Rûdaw) -** Navenda Diyaloga Navçandî (Interkulturelle Dialogzentrum /İDİZEM) hefta borî li Munchenê di salona PresseClub-Munchen de panelek li dar xist. Di panela bi navê "Li Tirkiyeyê di pêşdaçûna demokratizmê de rola medyayê /Die Rolle der Medien bei der demokratischen Entwicklung der Türkei" de ji Tirkiyeyê rojnamevan û nivîskar Oral Çalişlar (Radikal), Ergun Babahan (Star), ji Almanya jî pisporê Rojhilata Navîn Prof. Dr. Steinbach (Berlîn) û ji Zanîngeha Ludwig Maximilians-Universität a Munchenê (LMU) profesorê zanista rojnamegeriyê Prof. Dr. Thomas Hanitzch axivîn.

Nivîskar Çalişlar di axaftina xwe de bi bîr xist ku niha li Tirkiyeyê 65 rojnamevan di girtîgehan de ne û bi sedan jî gilîdar in. Çalişlar wiha axivî: "Piraniyên wan jî Kurd in û hinekî wan jî rojnamevanên radîkal in. 4- 5 kesên din jî di doza Ergenokonê de tên darizandin. Ew jî kesên ku li dijî AKPê plana darbeyek leşkerî kiribûn. Hikûmet, raya giştî û medyaya ewropî tenê behsa endamên Ergenokonê dikin, tenê wan wekî rojnamevan dibînin. Ji bo Kurdan çavên xwe digirin. Ew tiştek pir çevwt e, zik û mêjiyê raya giştî ya ewropî bi agahiyên nerastî tê tijekirin."

Rojnamevanê Starê Ergun Babahan jî di axaftina xwe de behsa têkiliya dewleta kûr û medyayê kir. Babahan da zanîn ku ji serdema Mustafa Kemal heta niha "dewleta kûr" medyayê bi destê leskeran kontrol dikir û got, "Li şûna agahiyên rast derew û viran belavdikirin û etnîsîteyên din wek dijmin dihatin nîşandan. Ji ber vê yekê ji derve ti kesekî baş nizanîbû li Tirkiyeyê çi diqewime û çi naqewime, li Ewropa jî tabloyek pozîtîf li ser Tirkiyeyê tune bû û hîn jî tune ye. Ew hemû tişt di demên hikûmeta AKPê de hatin guhertin. "Babahan da zanîn ku îro li Tirkiyeyê hemû mijar bi şêweyek eşkere tên axaftin û got, "Ev pêşveçûn ji bo demokrasiyê, ji bo pirsgirêka Kurd û ji bo rewşa Tirkiyê baş e. Lê elîta kevin, tevgerên leşkerî û dezgehên kemalîst dixwazin li pêşiya wan pêşketinên pozitiv astengiyan derxin."

**Li gor axavtvanên panelê, elîta kevin a kemalîstan û medya ya kûr niha li ber pêşdaçûna demokratizmê astêngên herî mezin in.**

Li gor bîr û baweriya profesore zanista rojnamegeriyê Prof. Dr. Thomas Hanitzch di welatên otarîter û nedemokratîk de, weke Tirkiyeyê, medya di hêla propaganda û dezinformasyonê de rolek pir girîng dileyîze. Hanitzch wiha axivî: "Medya dikeve ber ronahîkirina civakî û ji bo avakirina raya giştî ya demokratîk jî dibe asteng. Armancek wê tenê heye: di dêste desthildaran de ji bo veşartina bingeha otorîter, kontrolkirina civakê û ya raya giştî wek hacetekî girîng e."

Pisporê rojhilata Navîn Prof. Dr. Steinbach jî piştgirî da axaftvanan û wiha dom kir: "Pirsgirêka kurd hîn nehatiye çareserkirinê û li ber çareserkirinê ye. BDP di hilbajrtina dawî de 36 parlemen derxistin. Ew dengê Kurdan e, li ber wî dengî kes nikare guh û çavên xwe bigire. Di serdema hikûmeta AKPê de li Tirkiyeyê pir guherandinên girîng çêbûn. Erdogan di serî de got 'Mesela Kurd heye' lê belê di dema hilbijartinan de paş ve gav avet û got 'Li Tirkiyeyê ne mesela Kurd, lê hinek nerazîbûniyên hemwelatiyên me yên Kurd hene'. Divê her kes bizanibe heta pirsgirêka kurd neyê çareser kirin, rêya yekîtiya Ewropa û demokrasiyê ji bo Tirkiyeyê nayê vekirin. Yasayek bingehîn a demokratîk ji bo Tirkiyeyê wekî nan û avê pewîst e û divê bi lezgînî paragrafa 311 ya ku mafên tirkitiyê diparêze, ji holê bê rakirin. Di wir de barek giran dikeve li ser milên medya û rojnemavanan."



Wêne: Rûdaw




# Li Berlînê li heman qadê du meşên Kurdan

▶Li Berlînê Kurdên Bakur piştgirî dan Hatîp Dîcle, Kurdên Rojava jî li dijî rejîma Baas meşiyan.

**Berlîn (Rûdaw) -** Li paytexta Almanya hefta borî ji du perceyên Kurdistanê du çalakiyek protestoyên hatin li dar xistin. Her du calakî jî li bajarê Berlînê li qada Ku'damm ê dest pê kirin. Kurdên bakur ji bo piştgiriya parlementerê Bloka Ked, Aştî û Demokrasiyê Hatîp Dîcle û hevalên wî çalakiyek protestoyî hat li darxistin, Kurdên rojava û opozisyona Sûriyê jî resjîma Beşar Esed protesto kirin.

Piştî biryara YSKê ya xistina parlamenteriya Hatîp Dîcle. di serî de li Kurdistanê, Kurd çalakiyên protestoyî didomînin. Di vî çerçovê de Kurdên li Berlînê jî çalakiyek li darxistin. Çalakiya ku ji aliyê Komela Kurd a Berlînê ve hat organîzekirin, li navenda bajar Ku'damm ê hat li dar xistin. Rêxistinên çep û kesen der û dor jî piştgirî dan çalakiyê. Di çalakiyê de wêneyên Hatîp Dîcle û hevalên wî hatin daliqandin û dewleta Tirk hat şermezarkirin.

**"Em te naxwazin Esed"**

Muxalefeta Sûrî ya li derveyî welat û Kurdên li bajarê Almanya Berlînê li dijî rejîma Beşar Esed, meşek protostoyî li darxistin. Di çalakiyê de sloganên li dijî Esad hatin avêtin û pankartên "kujer Esed" hatin vekirin.

Li Sûriyê êrişa rejîma Beşar Esed her roj zêdetir dibe. li gorî agahiyan li seranserê welat, heya niha hejmara kuştiyan gîhîştiye 1700 kesî. Lê li aliyê din li dijî rejîmê û van êrişan çalakiyên protestoyî her berdewam dikin. Li paytexta Almanya Berlînê bi pêşengiya cîwanên muxalefetê meşek hat li darxistin. Kurdên li vî bajarê dijîn jî di çalakiya dijî rejîma Baas de cîhê xwe girtin. Meş li Ku'damm ê destpêkir û li ber balyozxaneya Sûriyê bi dawî bû. Di meşê de sloganên wek "Em te naxwazin Esed","Bese edî here" û pankartên "Em Sûriyeyek Demokratîk dixwazin" hatin daliqandin.

Nûnerên 10 partiyên Kurdên Rojava li Almanya civiyan û ragihandin ku wê bi opozisyona Sûriyê û diyasporaya Kurd re pêwendiyan xurt bikin


Wêne: Rûdaw

# Partiyên Kurdên Rojava li Ewropayê hevpeymanek pêk anîn

Seyîdxan Kurij Dortmund

11 partiyên siyasî yên Rojavayê Kurdistanê, dawiya vê heftê li Almanya li bajarê Dortmundê konferansek pêk anîn. Ji nûnerên 10 partiyên siyasî 20 kes tevlî vê konferansa 2 rojî bûn û li ser rewşa siyasî ya Sûriyê, pêwendiyên navbera partiyên kurd û dîasporaya kurd, ji bo xebata hevbeş, pêwendiyên bi opozîsyona Sûriyê re, karên lobî, dîplomasî û organîze kirina çalakiyan li Ewropa, gengeşî kirin.

Piştî konferansê nûnerên partiyan biryar girtin ku bi hev re tevbigerin, bi awayekî yekdeng û hemaheng xebat bikin. Herwiha nûnerê partiyan bi navê "Koalisyona Partiyên Kurd li Sûriyê-Rêxistina Ewrupa" rêxistinek hevpar damezirandin.

Li gor ragihandina nûnera Partiya Yekitiya Kurd li Sûriyê (PYKS) Mizgîn Meyqerî ev konferans ji aliyê 11 partiyan hatibû amade kirin, lê partiyek ji ber karên teknîkî nekariye beşdarê konferansê bibe. Lê got "ew partî biryarên konferansê dipejirîne û beşdarê hemû xebatên hevbeş dibe."

### Tevgera Neteweyî ya Kurd

Nûnera PYKS ji bo Rûdawê ragihand ew komcivîn berdewamiya xebata "Tevgera Neteweyî ya Kurd li Sûriyeyê" ye, ji ber wê ji tenê nûnerên ew 11 partiyan beşdarê civîna Dortmundê bûn. Partî û rêxistinên din ku ne di nav "Tevgera Neteweyî ya Kurd a Sûriyeyê" de ne, nehatibûn vexwendin.

Wek tê zanin di meha Gulanê de 12 partiyên kurd ên Rojavayê Kurdistanê li Qamişlo kom bûn û biryar dan ku Tevgera Netewî ya Kurd li Sûriyê ava bikin. Vê tevgerê biryar dabû ku ji bo bidesxistina mafê Kurdan ên rewa û mîsogerkirina wan mafan di nava makezagonê de têbikoşin.

Li gor ragihandina Mizgîn Meyqerî "Şepala Pêşerojê" piştî serbest berdana berpirsîyarê wan Mîşel Temo, xwe ji ew hevkariya 12 partiyên kurd paş ve kişand. Ji ber wê niha "Tevgera Neteweyî ya Kurd li Sûriyê" ji 11 partiyan pêk tê.

Di dawiya civîna Dortmundê de ji bo rêvabirina karên hevbeş du komîte hatin ava kirin. Jek komîteya rêveberiyê ye ku ji 9 kesan pêk tê û ya din komîteya siyasî ye. Di nava Komîteya Siyasî de Koordînatorê Partiya Yekitiya Demokratîk (PYD) yê Ewrûpa Ebdilselam Mistefa, nûnerê Ewropa yê Partiya Yekitî Demokrat a Kurd li Suriyeyê Dr. Kamiran Bêkes û ji Partiya Yekitiya Kurd li Suriye Mizgîn Meyqerî cih girtin.

**Mizgîn Meyqerî: Ev koalisyana 11 partiyan wê nûnertiya Kurdên Rojavayê Kurdistanê bike**

Nûnera PYKS Meyqerî got em wek li Kurdistanê, li Ewropayê jî bi hev re tevdigerin û wiha dom kir. "Ew koalîsyon wê nûnertiya Kurdên Rojavayê Kurdistanê bike û wê beşdarê xebatên dîplomatîk ên derbarê Kurdan bibe. Em ê hewl bidin ku bi komel û rêxistin û dîasporaya kurd re têkiliyan deynin da ku wan jî beşdarê vê xebatê bikin. Herwiha em ê hewl bidin ku bi hemû hêzên muxalîf yên Sûrîyê re pêwendî deynin û li Ewropa konferansek niştimanî ya Sûriyê pêk bînin. Me ji bo ew karan du komîte hilbijartin. Komîteya ku ji 3 kesan pêk tê, wê karên lobî, dîplomasî û pêkanîna danûstandinan bike".



Wêne: Rûdaw

Di pankartê de wiha hatiye nivîsîn: Paşverûyan şewitand, dewletê jî temaşe kir

# Elewiyên Berlînê 2ê tîrmehê ji bîr nekirin

## Du daxwaziyên Elewiyan: Kujer bên girtin, Madimak bibe muze

**Berlîn (Rûdaw) -** 33 rewşenbîrên elewî û demokrat ku 18 sal berê li Sêwasê hatibûn qetilkirin, li paytexta Almanya Berlînê bi meşek girseyî hatin bîr anîn.

Roja 2ê tîrmeha sala 1993ê 33 rewşenbîrên elewî û demokrat ji bo pîrozbahiyên Pir Sultan Abdal çûn Sêwasê. Lê li wir rastî êrişên faşîstan û hêzên kevneperest hatin û otêla lê diman ji aliyê van kesan ve hat şewitandin û 33 kes tê de şewitîn û jiyana xwe ji destdan. Kurd, elewî, çepgirt û demokrat 18 sal in li dijî vî bûyerê nerazîbûniyên xwe nîşan didin. Îsal jî hem li Sêwasê û hem li gelek deveran biranîn hatin li dar xistin. Li Ewropa bîranîna herî mezin li paytexta Almanya Berlînê hat li dar xistin. Meş ji Hermannplatz destpêkir û li Kreuzbergê bi dawi bû. Meşa ku ji aliyê BAAKM (Navenda Çandê ya Elewiyên Anatoliya li Berlîn) hat organîzekirin, nêzikî 3 hezar kes tevlî bûn û bûyera Sêwasê şermezar kirin.

### 'Em Sêwasê ti car ji bir nakin'

Di meşê de li ser navê BAKKM cîgirê serokê saziyê Erdal Çaglar, axaftinek kir. Çaglar, hikûmeta AKPê bi zimanek tund rexnekir û got: "Dixwazin van bûyeran ji bîra me bibin. Ev 18 sal in em her roj dibejîn û dîsa jî dubare dikin; em Sêwasê ti car jî bir nakin.18 sal derbas bûn hê jî kujer nayên dîtin û cezakirin. Naxwazin bûyerê çareser bikin." Çaglar, daxwaza Elewiyan bi van gotinan anî ziman: "Bila otêla Madimakê bibe muze û ev buyera reş wek mînak li ber çavê herkesî bimîne."

Rêvebirê Giştî yê Çavkaniyên Ava Herêma Kurdistanê:

# Li bajarê Hewlêrê 80 bîr zuha bûne

▶Li Hewlêrê ava bin erdê 20 metoyan daketiye.

▶Li Hewlêrê rojane her kesek 780 litrên avê bikartîne.

▶Rêvebire Ava Hewlêr: Projeyê Îfraz 3 wê di meha tebaxa îsal de biqede û em ê hin bîran bigirin.



**Rewa Ebdulla**

Serokê Komela Parastina Avê got ku ji ber erzaniyê û nebûna sansura li ser zêde bikaranîna avê, her hevwelatiyekî bajarê Hewlêrê di rojê de çar caran ji standardê navnetewî zêdetir avê bikar tîne û her cihekê şûştinê jî li Hewlêrê biqasî 50 malbatên 5 kesî avê bikar tîne, wî herwiha got: "Xirab bikaranîna avê eger neyê kontirol kirin, Hewlêr heta 15 salên din wê rastî pirsgirêka bê aviyê bibe."

Komeleya Parastina Avê li Herêma Kurdistanê di nîva sala 2000î de hatiye damezrandin û şaxê wê yê sereke li Hewlêrê ye, wê komeleyê heta niha li ser hişkesaliyê û xirab bikaranîna avê çendîn lêkolîn kirine û kursên hişyarkirina ji bo parastina avê vekirine. Vê komeleyê lêkolîn û pîvana xwe ya dawiyê li ser rêjeya bikaranîna avê di navbera 2 û 15ê Gulana îsal de di 50 şûştingehên (ciyên şûştina otomobîlan) Hewlêr û derdorên wê de pêkanî bû. Li gor wê pîvanê rojane her şûştingehek 50 hezar litre ava bin erdê bikar tînin û sercemê ava ku di rojekê de di şûştingehên Hewlêrê de tê bikaranîn dighîje 2 milyon û 500 hezar litreyan.

Serokê Komeleya Parastina Avê, Reşîd Cercîs got ji ber kêmiya buhayî û nebûna sizayên darayî li ser zêdebikaranîna avê, beşeke hevwelatiyên bajarê Hewlêrê bê ku pêwîst be avê xerc dikin, wî herwiha got: "Li gor pîvana ku Rêxistina Qendîl a Swêdî di sala 2009ê de li çend taxên bajarê Hewlêrê encamdabû, diyar bû ku her hevwelatiyekî bajarê Hewlêrê rojane 780 litre avê bikartîne, ev rêje çar caran zêdetir ji standardê navnetewî ku di rojê de 180 litre ye."

**"Pêver hebe, biha zêde bibe wê av xelk avê kêm xerc bike"**

Li gor wî pisporê avê, danîna pîver û buhayê baştirîn rêya zêde xerickirina avê digire, ji ber ku bi baweriya wî eger pîver hebe û buha jî li gor zêdexerickirinê bê diyarkirin, wê demê xelk avê zêde bikar nayîne û got: "Aliyên berpirs divê bilez pîveran deynin."

Rêvebirê Giştî yê Çavkaniyên Ava Herêma Kurdistanê, Mihemed Emîn Faris dibêje ew bîrên ku bi şêweyekî neyasayî hatine kolan, bêtirîn rêjeya ava bin erdê xerc dikin, û got: "Bi sedema wan bîrên ku bi şêweyekî ne yasayî hatine kolan, di 10 salên borî de astê ava Hewlêrê ya bin erdê 20 mêtre daketiye. Ew amaje dide wê yekê ku beriya 10 salan li bajarê Hewlêrê kolana bîrekê pêwîstî bi 150 metroyan dibû, "lê niha ji bo derxistina avê pêwîst e 350 – 400 metroyan bikolin."

Rêvebirî eşkere jî kir ku bi sedema hişkesaliyê û zêde xerckirina ava bin erdê ji 80- 90 bîrên bajarê Hewlêrê hişk bûne û wiha axivî: "Li Destha Hewlêrê astê avê 11 metroyan, li Şawês 30 metro, li Baneman 30 metro, li Şaqlawa 8 metro û li Kawaniyan 40 metroyan daketiye."

Lê Rêvebirê Ava Hewlêrê, Mesûd Kareş bi dûr dibîne ku Hewlêr rastî qeyrana avê bibe û got ku ew niha bêtirî ji sedî 60 ava taxên bajarê Hewlêrê ji ava bîran garantî dikin: "Projeyê Îfraz-3 wê di meha Tebax a îsal de biqede, wê demê wê rêjeya ava ku digihe bajar wê di rojekê de ji 144 hezar metroyên sêcar bighîje 240 hezar metroysên sêcar. Wê demê pêwîstiya me bi ava beşeke zêde ya bîrên Hewlêrê namîne û em ê hinekan bigirin."

**Li Kurdistanê bêtiriya bîrên avê bi şêweyekî îlegal hatine kolan**

Li gor amarên Rêveberiya Giştî ya Çavkaniyên Avê, 35 hezar û 741 bîrên avê li Herêma Kurdistanê hene, ji wan tenê 15 hezar û 541 bîr li gor destûrê hatine kolan, yên din jî hemû bi şêweyekî îlegal hatine kolan.



Dirêjtirîn şikefta Îraqê li Çemçemal e

## Çemçemal da pêşiya Necefê

**Silêmanî (Rûdaw)** - Bi eşkerebûna dirêjiya şikefta 'Kune Kemtyar' li navçeya Sengaw ya ser bi qezaya Çemçemal, derket ku şikefta herî dirêj li Îraqê ye. Berê wisa hatibû ragehandin ku şikefta herî dirêj li Îraqê, li wîlayeta Necefê ye. Rêveberê Muzexaneya Silêmaniyê Haşim Heme Ebdulla bo Rûdawê got ku "grubeke pisporên almanî berî çend salan hatine Kurdistanê da ku çend şikeftan rûpîvan bikin. Piştî lêkolînên wan derket ku şikefta herî dirêj ya Îraqê şikefta 'Kune Kemtyar' a li navçeya Sengawê ya girêdayî qezaya Çemçemal e."

Li gor rûpîvan û lêkolînên ku gruba alman kiribûn, dirêjiya vê şikeftê zêdeyî 4 km ye û bi vî awayî jî dide pêşiya şikefta Necefê ku berê weke dirêjtirîn şikeft li Îraqê dihat naskirin û dirêjiya wê 2 km in.



Laşfiroşî ligel qereçiyan li ser cadeyên Silêmanî

# ‘Xelk ne ji bo xêrê, ji bo seksê pereyan dide me’

**Dîmen Burhan** Silêmanî

Li ser kolaneke Silêmaniyê, Fatime pakêteke biçûk a benîşt di dest de ye, dema lembaya sor a trafîkan pêdikeve, ji caman serê xwe nêzîkî hundirê otomobîlan dike. Fatime qereçî ye û temenê wê 19 sal in, lê dûcanî ye û dibêje: “Herdem derbiderî para min e.”

Fatime derbarê bavê zarokê di zikê wê de hinekî radiweste û bi zehmetî bersivê dide: “Dibe ku şofêrekî taksiyê be.” Fatime veneşart piraniya ciwanên ku pereyan didinê, li himber van pereyan daxwazekê jê dikin: “Dixwazin bi wan re razim, ti kes bo xêrê pereyan nade min.”

Faruq Mihemed ku bi xwe çend caran dîtiye ciwan ligel qereçiyên li ser cadeyan axivîne û daxwaza karê laşfiroşî ji wan kirine, dibêje: “Jixwe ev ji me kêm bû, va niha qereçî li ser cadeyan bazara laşfirotinê jî dikin, bi rastî pêwîst e hikûmet lêpirsîna wan bike.”

**Li ser cadeyan jinên ciwan ên qereçî tên ber camê otomobîlan û bi şofêran re bazariyê dikin...**

## Ji Mûsilê hatiye Silêmaniyê

Minewer (29) jineke din e ji wan jinan, her çiqasî red kir qereçî be, lê daye dû qereçiyan. Ew dibêje ji gundekî girêdayî Musilê ye û bêkariyê ew aniye Silêmaniyê: “Piştî mirina bavê min û mêrkirina diya min, reviyam vir.”

Minewer dibêje, ji ber nebûna cih pêşî nêzîka 6 heyvan li goristana Seywan maye: “Min bi roj parsekî dikir û bi şev jî diçûm wir, dûre şevan li navçeya pîşesazî dimam.” Minewer mikur hat ku ciwan daxwaza seksê jê dikin: “Ciwanekî carekê 200 dolar dan min û got ez ê te bibim mala xwe û heya sibehê ligel min bimîne.”

Çîroka ji destdana perdeya xwe ya keçîtiyê jî wiha got: “Sond dixum ne bi hemd bû, çend ciwanan êrîşî min kirin û min birin xaniyekî nêzîkî taxa Kurdsat û heya 5ê sibehê karên xirab ligel min kirin.”

Hejmareke zêde ya parsekên li ser kolanan axaftina bi me re bi tundî red kirin, lê ew bêtir amaje didin şofêrên taksiyan. Yasîn şofêrê taksiyê ye û qereçiyan weke laşfiroş binav dike: “Çend caran min bi çavê xwe dît ev jinên qereçî milên ciwanan digirin û ji wan nagerin heya pereyan ji wan nestînin.”

Hevwelatî bi bêzarî qala van qereçiyan dikin û ji hikûmetê dixwazin wan li ser cadeyan nehêlin û rê nedin ku van karan bikin.

## “Heya kes gilî neke em wan nagirin”

Rêveberê Ragehandina Polîsên Silêmaniyê Komîser Aso Omer got: “Heya ku kesek dozê li dijî wan veneke, em nikarin wan bigirin.” Omer diyar kir ku erkê qaymeqamiya qezaya Silêmaniyê ye ku kolanan ji parsekan pak bike.

Lê qaymqamê qezaya navenda Silêmaniyê Zana Mihemed dibêje: “Em wan ne weke laşfiroş, lê weke parsek digirin çimkî wekî din belge pêwîst in, yasa wê çaxê dikare berpirsiyariyê li situyê xwe bigire.”





Taman Şakir

## Bila hikûmet ji we re bike



Pirsgirêka bicihbûnê niha yek ji pirsgirêkên mezin a xelkê hejar û destkurtê Kurdistanê ye. Li gor pîvan û rewşa niha ya hinekan, pêwîstiya wan bi çend temenên din ên karkirinê heye heta bikaribin di vî welatî de bibin xwediyên odeyekê. Mal, ango nîştîman, mala mirov li kû be ew der dibe nîştîmana mirov. Mîna ku Magut dibêje “li her ciyê ku mala te tune bû, tenê pêlavên te te bi wî nîştîmanî girêdidin.” Loma tiştekî asayî ye ku mirov ji bêmalî li pey welatekî din bigere ku tê de dilxweş bibe û heta eger mirov nikaribe jiyana xwe garantî bike jî, hikûmeta wî welatî ji mirov re garantî bike.

Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi dirêjiya temenê xwe her xizmeta xelkên dewlemend, law û keçên malbatên naskirî kiriye, tevî ku enerjiya hemû şoreş û berxwedanên gelê Kurd, hertim xelkên hejar bûn, çi li çiya yan li bajaran, lê Hikûmeta Kurdistanê di van çend salên desthilatdariya xwe de, herdem postên baş, erdên baş, moçeyên baş hêjayî wan kesan dîtine yên ku bêtiriya wan ne ji dûr û ne ji nêzîk peywendiya wan bi şoreşên Kurdî nebû û li pey berjewendiyên xwe digeriyan.

Hikûmeta Herêma Kurdistanê li ser navê çareserkirina pirsgirêka bicihbûnê, bi hezaran doniman erd dane sermayedarên biyanî, lê haya wê ji wê yekê nîne ku ev sistem pirsgirêka bicihbûnê çareser nake, ji ber ku ew xelkên biyanî ne û haya wan ji rewşa xelkê Kurdistanê nîne, yên Kurd jî ku hesta wan netewî û nîştîmanî tune, armanca wan girankirina buhayê xaniyan e û komkirina dirav e. Beşeke dewlemdên Kurdistanê jî ji her projeyekê bi dehan xaniyan bi hev re dikirin û paşî bi qîmeteke zêde girantir difiroşin û derfetê nadin xelkên hejar û destkurt, ji xwe pişkên mehane yên xaniyan ewqas giran in xelkên hejar nikarin bidin. Tiştê girîng ku niha bê kirin ew e ku mercek bê danîn û di wan projeyan de her kesî mafê kirîna yek xanî hebe.

Hikûmet di van projeyan de fikra wê yekê nekiriye ka kî van xaniyan dikire, ti yasa û talîmat jî nînin bo organîzekirina kirîn û firotinê, loma hin dikirin û hin jî temaşe dikin.

Apartmaneke 40 metroyî bi 50 hezar dolaran e, pişka mehane jî yek hezar dolar e, herwiha pêwîst e di sê mehan de 9 hezar dolaran jî bidî, gelo kîjan karmendê kirêdar ê hikûmetê dikare wî diravî bide? Birêzan gelî rêvebirên vî welatî, hûn ji me re nabêjin hûn kar û xizmetê ji kê re dikin? Niha ku 39 milyon donim erd bo projeyên bicihbûnê hatine terxankirin, lê dîsa jî Serokê Hikûmeta Herêma Kurdistanê wê yekê piştrast dike ku li Kurdistanê 76 hezar malbat di kirêyan de dijîn. Ev e şikestina polîtîkayê û polîtîkaya hilberînê di projeyên bicihkirinê de.

Ji xwe dema mirov ji xwediyên projeyan dema daxwazê dike ku hinekî hêsankariyê bo jinên bi tenê û xelkên destkurt bikin derbarê dana pişkên mehane, ew gelekî bê şermî dibêjin “bila hikûmet ji we re bike.”

# Bersiveke nû ji bo pirsyareke kevin



**Rêbiwar Kerîm Welî**

Gelek caran rojnamevanên tirk, û heta yên biyanî jî, dema bi siyasetmedar û dewletdarên me re diaxivin, di nava axaftinên xwe de pirsa pirsgirêka kurd li Tirkiyeyê jî ji wan dikin. Cara herî baş jî bersiva wan bi vê şêweyê bûye: "Pirsgirêka kurd li Tirkiyeyê pirsgirêkeke navxweyî ya Tirkiyeyê ye, bi şêweyê leşkerî nayê çareserkirin…" û dema piştre pirs ji wan dikirin "gelo çareserî çi ye?" bersiva wan ew bû: "Em dest nadin karûbarên hundirê Tirkiyeyê, çareserî wê li gor taybetmendiya siyasî û civakî ya Tirkiyeyê bê dîtin." Tevî ku birêz Nêçîrvan Barzanî berî sal û nîvan ew çarçove şikand û bi eşkere got "divê PKK weke muxateb bê dîtin", lê daxuyaniya dawiyê ya vî siyasetmedarê Kurd ê Herêma Kurdistanê ku niha cîgirê serokê mezintirîn partiya Başûrê Kurdistanê ye û peywendiyên wan digel Tirkiyeyê di qunaxa zêrîn de derbas dibin, ew daxuyanî xaleke werçerxane di xwedîderketin û dûvçûna pirsgirêka kurd li Tirkiyeyê û bersiveke nû ye ji bo pirsyareke kevin.

Daxuyaniya dawiyê ya Nêçîrvan Barzanî bo rojnameya 'Milliyet' a tirkî çarçoveyekî rast diyar dike ji bo derbasbûna vê qeyrana ku niha Tirkiye ketiyê, ew di heman demê de jî bo çareseriyê nexşerêyek e . Ev daxuyanî gihişt wê radeyê ku Murat Karayilan, Serokê Konseya Serokatiya KCKê, di wê derbarê de ji min re got "ez hêvîdar im hemû siyasetmedarên Kurd mîna kek Nêçîrvan helwestê nîşan bidin."

Nêçîrvan Barzanî di daxuyaniyên xwe de çareserî di 7 xalan de diyar kiriye, lê berî ku ew wan 7 xalan pêşçav bike, ew bi eşkere dibêje ku êdî gok di saheya Enqere de ye, ji ber ku haya wî bi xwe jî baş ji wê prosesê heye ku ev dema bêtirî salekê ye karbidestên tirk daxwaz dikin ku Partiya Karkerên Kurdistanê (PKK) agirbestê dirêj bike û derfetê bide wan heta ku tiştekî bikin. Helbet tevî ku Tirkan tiştek jî nekirine, lê li hember de PKKê bi fermî gotina Serokatiya Herêma Kurdistanê û agirbest jî neşkandine.

Heft xalên ku Nêçîrvan Barzanî berçav kirine, bi kurtî pêk tên ji: "Qebûlkirina rastiya PKKê û di prosesa aştiyê de hesabê wê bê kirin, berçavkirina rola Ocalan û rewşa Ocalan di vê prosesê de nêyê ji bîr kirin ku Ocalan serokê rasterast ê PKKê ye, yekkirina xitaba Tirkiyeyê di meseleya aşitî û çareseriyê de, avakirina baweriyê, biryarên desthilata dadweriyê yên derbarê dosyeya Hatîb Dicle û girtiyên KCK di bin çavan de bên derbas kirin, dîtina çareseriyê ji derbiderên Kampa Mexmûrê re."

**Tirkiye nikare di çareserkirina doza kurd de PKKê piştguh bike**

Roja îna borî, dema min û çend hevalan li ser vexwandina birêz Karayilan serdana Qendîlê kir, hemû axaftinên Karayilan jî, eger em hevber bikin, digel axaftinên birêz Nêçîrvan Barzanî di yek çarçove û hêla giştî de bûn, helbet tevî hin cudahiyên di hûrbîniyan de. Karayilan di wê rûniştinê de got ku ew êdî ne amade ne agirbestê dirêj bikin û eger di van çend rojên mayî de, ku heta 15ê tîrmehê maye, dewleta tirk bersiva daxwaziyên wan pê re nebe, ew ê "şerê şoreşgeriya gel" îlan bikin. Dema min jê pirs kir ka mebesta wan şikandina agirbestê ye, wî got "şerê siyasî û leşkerî yê yekperçeyî li Bakûr."

Lê xwestekên PKKê çi ne? Bi kurtî mîna ku min got, heman ew çarçoveya giştî ye ku birêz Nêçîrvan Barzanî ji bo çareseriyê û parastina aramiyê diyar kirine. Ji ber ku Karayilan dema behsa heft xalên Nêçîrvan Barzanî kir, got "kek Nêçîrvan piştgiriya PKKê nekiriye, lê ka rêya çareseriyê çawa ye û çarçoveya wê çawa ye, wî ew ronî kiriye. Em diyarîkirina wê çarçoveyê ji aliyê wî ve gelekî pozîtîv dibînin." Ji ber ku PKK jî dibêje dewlet bi Ocalan re rûdine, lê ne amade ye eşkere bike, divê ev bi eşkere bê ragihandin û hewlên çareseriya pirsgirêka kurd di bin perdê de nemînin.

Dewlet li aliyekî behsa aştiyê dike û li aliyê din operasyonên leşkerî û polîsî didomîne. Loma dewleta tirk û bi taybetî Erdogan divê di maweyê van du heftiyên ku bo dawiya agirbesê mane, danûstanên xwe yên ligel Ocalan eşkere bikin û operasyonên esker û polîsan bidin rawestandin. Ev du xwestekên bingehîn in ji bo domandina prosesa aştî û çareseriyê. Bi rastî heman ew axaftin ku birêz Nêçîrvan Barzanî di heft xalan de ronî kirine. Bi ramaneke din, Tirkiye êdî nikare di meseleya çareserkirina doza kurd a li Tirkiyeyê, PKKê piştguh bixe. Herwiha hemû pêşketinên di wî warî de jî girêdayî wê yekê dimînin ka dewleta tirk çend amade ye wê rastiyê qebûl bike ku niha li ser cadde û di nava Parlemene Tirkiyeyê de heye.

# Li Tirkiyê têkiliya medya û siyasetê Pirsgirêka herî girîng hê jî pirsgirêka Kurd e*



**Oral Çalişlar**

Tirkiye di pêvajoya demokratîkbûnê re debas dibe. Komara ku di sala 1923ê de hatiye damezirandin, komareke otorîter bû. Modernîzekirin weke ku di Şoreşa Fransî de hat kirin, bi zorê û ji jor ber bi jêr ve hat kirin.

Hêza herî girîng a ji bo modernîzekirinê artêş bû. Burokrasî û dezgehên dadê jî bûn perçeyen modernîzekirinê. Medya jî ji ew roj heta niha li gel hêza mezin, aliyên bihêz û ligel desthilatdarê cih girt.

Ji sala 1960 şûnde rejîma pirpartîtiyê sê caran bi derbayên leşkeri hate birîn. Piştî her derbeyek leşkerî hêza artêşê li ser siyasetê xurtir bû. JKi xeynî derbeyan, bandora leşkeran hertim li ser siyasetê dom kir.

Demokratîkbûna Tirkiyê û derbeyên leşkerî li dû hev pêkhatin. Di encama ve pêvajoya germ de çîna elît (bijartî) a komargeran derket holê. Ev çîn ji burjuvaziyê Stenbolê, ji leşkeran û ji burokrasiyê pêk dihat. Li himberê wê jî li Anatoliya burjuvaziyeke nû derket holê.

Di têkoşîna navbera siyasetvanên ku pişta xwe dabûn Anatoliya û elîtên ku pişta xwe dabûn leşkeran de, heta salên 1990î hêzên mîlîtarîst bi ser ketin. Çarenivîsa siyasetê di hilbijartina sala 2002ê de ber bi guhertinê vê çû. Di hilbijartina ew sal de ku di meha mijdarê hatibû li dar xistin, AKP piraniya kursiyên parlemenê bi dest xistin.

Leşkeran, dezgehên dadê, burjuvaziyê Stenbolê hêza wan a din medya, desthilatdara nû nepejirandin. Li himberê AKPê û li himberê gavên demokratîk ku di rêya beşdariya Yekitiya Ewropa de dihatin avêtin, li ber xwe dan. Bi armanca destavêtina nav siyasetê zêde tevgeriyan û dest bi tevgerek berfireh kirin.

Bi sedan leşkerên payebilind ên ku niha di dadgehên sivîl de tên darizandin, ji belgeyên ku tên weşandin jî tê fahmkirin ku xwestine gelek caran derbeyên leşkerî li dar bixin. Bo vê mabestê xwestine di nava gel de tevlihevî çêkin, kesên navdar bi sûîkastan bikujin û gel berahev bidin û ji bo wê jî çi rêyên nesayayî hebin ceribandine.  Niha di dadgehan de hesabê wan tiştan didin.

Divê neyê ji bîr kirin ku di nava van hemû karên tarî de dezgehên medyayê jî rolên aktîf leyîstine û bi mabesta piştgirtina leşkeran ketiye nav hewldanan jî. Medya li Tirkiyê hertim bûye hevalbendê aliyên bihêz.

AKP di pêvajoya têkoşîna li dijî derbeyan û derbekaran de ji ber ku şert û mercên hundir û yên derve pozîtîf bûn, serkeftinên girîng bi dest xistin. Bandora arteşê ya li ser siyasetê pir kêm bû. Bi mabesta demokratîkkirina sîstema dadê de gavên girîng hatin avêtin.

**Medyaya Tirk hertim bûye hevalbendê aliyên bihêz...**

Medya jî ji van pêşketinan dûr namîne û li gor wan ji nû ve xwe dizayn dike. Di vê navberê de gelek nivîskar û rojnamevanên navdar ên ku em dikarin wan wek stûnên medyaya navîn bi nav bikin, hêz û kariyera xwe winda kirin, belav bûn. Medyayeke nû ya ku piştgirî dide AKPê derket holê. Di vê qadê de hê jî pêşketinên girîng didomin.

Hilbijartina 12 Hezîranê ya îsal pêvajo û serdemeke nû nîşanê me dide. Desthilatdariya vê serdema nû ji  siyasetvanên Îslamîst ên ku AKPê damezirandin, pêk tê.

Tirkiye hê jî bi Makezagona ku piştî cûntaya 1980 amade kiribû, tê birêvebirin.  Divê parlemena nû di şûna vê makezagonê de yeka nû amade bike. Pirsgirêka bingehîn ev e.

Yek pirsgirêkeka din a girîng a bingehîn jî pirsgirêka Kurd e. Di hilbijartina dawî de tevgera siyasî ya Kurd li herêmê dengên zêde yên Kurdan standin. Kurd dixwazin bi nasnameya xwe di parlemenê de cîh bigirin. Lê 6 parlementerên ku hatine hilbijartin hê jî di girtîgehê de ne. Kurd dixwazin ew 6 kes bên berdan. Ji bo vê jî parlamenterên din parlemenê boykot dikin.

Niha çavê her kesî li Serokwezîr e. Partiya opozisyonê CHP jî tevlî xebatên parlemenê nabe. Du endamên wan jî ku ji ceribandina derbeyên cunta tên darizandin, di girtîgehê de ne û hê jî nehatine berdan.

Beşdarîkirina gel a hilbijartina îsal ji % 85 bû, partiya deshilatdar jî ji %50 dengan bi dest xist, ev diyarde jî hêza parlemena nû nîşanê me didin. Lê Tirkiye niha di aloziyê de ye. Sedemên vê aloziyê jî sîstema antî-demokratîk a berê ye. Ev sîstem Kurdan înkar dike, hemû daxwaziyên wan wek "teror" bi nav dike. Ji ber vê sîstemê niha li dijî bi sedan rojnamevanan doz hatine vekirin.

Dema ji dervê bê mêzekirin Tirkiye di nava tevliheviyekê de xuya dike. Li gor tabloya ku xuya dike hikûmet rojnamevanan digire û davêje girtîgeû dixwaze demokrasiyê ji holê rake.

Gelo ev tabloya rastîn e? Bi rastî mirov dikare bêje, erê tabloya rastîn e, û nerastîne jî. Niha li Tirkiyê 65 rojnamevan di girtîgehê de ne. Gelek ji wan an rojnamevanên Kurd in an jî çepgir ên radîkal in. Çend rojnamevan jî bi piştgirîkirina derbeya cuntayê vê tên darizandin. Rewşeke nebaş e ku ewqas rojnamevan girtî bin. Divê hikûmet ew yasayên ku dibin sedema girtina wan rojnamevanan, ji holê rake.

Dadwer û dozger yasayên sîstema berê diparêzin û li gor wan yasayan himberê gelek rojnamevanên din jî dozan vedikin.

Ji bo çareseriyê divê beriya her tiştî yasa bên guhertin û ligel yasayan mêjî û nêzîkbûna dozger û dadweran jî bê guhertin.

Tirkiye dikare bi xurtkirin û berfirehkirina demokrasiyê xwe ji vê aloziyê xilas bike. Xwediya vê hêz û potansiyelê ye, lê di vê rêyê de gelek astengiyên cidî hene.

Pirsgirêka herî giran hê jî pirsgirêka kurd e.

**Ev gotar bi taybet bo Rûdawê hatiye nivîsandin*

# Koçberî



Dr.Fikret Zengîn *

Ji ber sedemên cuda mirov neçar dimînin ji cih û warên xwe koç bikin. Koçberî ji ber sedemên afetê yên xwezayî, rewşa aborî ya xirab, şer, zilm û zordariya ku ji aliyê leşker û polîsan ve tê kirin, derdikeve holê. Di dema koçberiyê de mirov bi xetera mirinê re rû bi rû dimînin. Gelek ji wan xizm û kesên xwe yên herî nêz di rêya koçberiyê de winda dikin.



**Koçberî çi ye û divê çawa bê fahmkirin?**

**Dr.Fîkret Zengîn:** Gelek şêweyên koçberiyê hene, ji gund, bajar, herêm û di navbera welatan de ji neçarî cih û war tên terikandin. Ji bo canê xwe ji tehlûkeyan xilas bikin mirov direvin warekî din. Ti kes ji xweşiya xwe serî li rêbaza koçberiyê nade. Bêgûman koçberî li ser mirovan bandorek neyînî çêdike. Di sedsala dawî de gelek şerên mezin çêbûn û bi milyonan mirov neçarî koç kirin. Dema jiyana mirova dikeve tehlûkê hewildana ku xwe ji wê tehlûkeyê xilas bikin derdikeve pêş û ji bo ser lingê xwe bimînin dibin xwedî hewildanek bêhempa. Tenê ne mirov herwiha dema ku heywan jî bi tehlûkeyan re rû bî rû dimînin serî li rêbaza parastinê dixin; em jê re parastina psîkolojiyê dibêjin.

**Hûn aliyê koçberiyê yên pozîtiv û negatîv çawa destnîşan dikin ?**

Li vir ez dixwazim li ser morovên me yên ku ji Kurdistanê koçî Almanya kirine, hinekî rawestim. Him bandorek negatîv û him jî bandorek pozîtiv heye. Aliyê negatîv: zarokên wan malbatan ji rastiya dijmin gelek dûrdikevin û zêde nasnakin. Dibêjin ew nikarin tiştek bi me bikin, ji ber wan ew zilma ku li ser malbatê hatiye dikirin, nedîtine. Ev aliyên nagatîv in. Herwiha gelek aliyên pozîtîv jî hene: ew kesên ku koç dikin û tên welatê xerîbiyê gelek ji wan dema ku li Kurdistanê bûna ew şert û mercên aborî yên xirab ku nikaribûn bixwînin wê ji wan re bibûya pirsgirêk. Li vir îmkan û derfetan bi kar tînîn û xwe digîhînin gelek cihên girîng. Eger ew mirov di nav wan şert û mercên xirab de mabûna wê nikaribûna bixwînin. Di aliyê aborîde wê bi pirsgirêkên gelek dijwar re rû bi rû mabûna. Mirov dikare vê yekê bi awayekî posîtiv binirxîne. Lê tiştek li vir heye ku em ti caran ji bîr nekin: ew tehlûkeya ku dibin navê integrasyonê de, bên asimîlekirin û ji çand, ziman û rastiya xwe dûr bikevin jî heye. Divê malbat bi awayekî zanist wê rastiya xwe bi zarokên xwe re bidin nasandin.

*Amadekirin: Zelal Çelîk*

**Dr.Fikret Zengîn ji Bakurê Kurdistanê ye li Almanya dijî û bijîşkê psîkolojiyê ye.*

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Mekke û kabeya Êzîdîyan – Çewalê piçûk. 2- Heqanet, mafdarî – Gotinek ecêbmayînê. 3-Kişkişandin, êrîşkirin, raberizandin – Mekîne û tiştên mekanîk, mirovên mekanîk. 4- Deng, awaz – Weşan, qalib – Xerîb, dereke, nenas (berepaş) – Darek, jina bê mêr. 6- Lêkirin, şênkirin. 7- Axa spî û gewr, wek kilsê ye – Cûreyek masîyan. 8- Bi Soranî sar, cemidî (berepaş) – Flîmek sînemayê. 9- Kulîlkek zere û bîhnxweş – Apo, mamo. 10- Sembola Nîkelê – Navekî zilaman (berepaş).

**Serejêr:** 1-Ricifîn, ji serma hejandin. 2- Meha Newrozê – Zarok û çêlîkên ku berî wextê xwe çêdibin. 3- Ferşên piçûk, lîztikek ku zarok bi keviran dilîzin – Paytextê Senegal ê (berepaş). 4- Demsalek, zivistan (berepaş) – Deng digre û muzîkê dide gotin. 5- Demançe, şeşderb – Pirsek. 6- Wek hev, fîftî fîftî, ji bo lîztikê tê bikaranîn (berepaş) – Sol û pêlava zivistanê, keştîya piçûk (berepaş). 7- Gulpek, ji bo vexwarinê tê bikaranîn. 8- Zimanê Hindistan û Pakistanê – Rojek (berepaş) – Namûs, heya, agir. 9- Tiştên bi ruh û can – Mektûb, reşbelek. 10- Welatek Ewrûpayê (berepaş) – Kurtgirina gotinê, bi Ingilîzî biçe, here (berepaş). 11- Nexêr, nabe. 12- Ji malbatê derbas dibe (berepaş). 13- Sol û şekalên zivistanê, potîn (berepaş). 14- Hestîyê kabokê. 15- Lûle, hesin û plastîkên bi qul (berepaş). 16- Bê av, ziwa.



**Bersivên hejmara 102**



### Îlan




**14. Festîvala Ciwanan a Mazlum Dogan**

**Dem:** Roja Şemiyê - 09.07. 2011

**Saet:** 10-17

**Cîh:** Stadion Köln-Süd Vorgebirgstor 1-3 50969 Köln

### Îlan




**Ji bo piştgiriya Rojavayê Kurdistanê mîtîng û konser**

**Dem:** Roja Şemiyê - 09.07. 2011

**Saet:** 17:00

**Cîh:** Marktplatz 53111 Bonn / Almanya

### Peyamên we belaş tên belavkirin

Hûn dikarin peyamên sersaxiyê, pîrozbahiyan, agahiyên derbarê hemû cûreyên çalakiyan bi rêya e-mail a me (**info@rudaw.eu**) ji me re bişînin. Bi şertê ku nivîsên we ji 100 peyvan ne dirêjtir bin, em ê wan li vir belaş biweşînin.

**WEFAT Û SERSAXÎ**

Bi mirina xwuşka me ya delal Safiye Bayrak, jina hevalê me Hozan-Aşik Temeli (Seydali Bayrak) em gelek xemgîn in.
We ji nexweşîya kanserê jiyana xwe ji dest da.

Em ji Temeli û malbata wî re sersaxî û sebir dixwazin û êşa wan parve dikin.



**Roja şînê:**
**07.07.2011**
Marktoberdorf
St. Martin Kirche
Saet 11:00'de
em benda hemû dost û hevala ne.

Roşad Ozkan

Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk

# Bayern München ez têm!




Îstikvanê tîma Bayern München û yê tîma netewî ya Almanyayê Thomas Müller, lehengê wî yê fûtbolê ye. Firatê 10 salî jî dixwaze rojekê weke Thomas Müller di tîma Bayern Münchenê de bileyîze. Û Firat lîstikvanekî baş e jî. Firat û tîma xwe E4 – BV Cloppenburg îsal bûn şampiyonê grûba xwe. Firat herwiha di dibistanê de jî serketî ye. Piştî bêhnvedana havînê Firat wê biçe sinifê 5. yê Realschule. Malbata Firat ji Bakurê Burdistanê, ji gundê Xanika Şêxan ya ser bi Nisêbînê ye û niha li Bakurê Almanya, li bajarê Cloppenburg dijî.

## Welatê me!

## Rewandiz



Bajarê Rewandizê dikeve başûrê Kurdistanê û yek ji bajarên Kurdistanê yê kevnar e. Rewandiz di dîroka Kurdistanê de xwedî cihekî diyar e, bi taybetî di sedsala 19. de. Di wê demê de Rewandiz paytexta mîrgeha Soran bû. Av, hewa û xwezaya Rewandizê gelekî xweş e û havînan gelek kes ji bo bêhnvedanê berê xwe didin vê deverê. Bi taybetî demsala havînan xelkekî zêde ji başûr û naverasta Îraqê berê xwe didin çiyayên hênik yên derdora Rewandizê.

## FÊRÎ KURDÎ BIBE

Ş ش



Şêr شێر

## Ceribandin



### Ava sar, an jî ava germ giran e?

***Pêdivî***
- *Du şûşên şîr*
- *Ava germ û sar*
- *Hibir*
- *Kaxeza rûnî, an jî kartonek tenik*

**Çawaniya pêkanina ceribandinê**
Em çend dilop hibirê bikin nava şûşeyekê, paşî vê şûşê tije ava germ bikin.
Şûşa duyem jî tije ava sar bikin û devê wê bi kaxeza rûnî bigirin. Paşê em nehêlin ava wê birije û sernişîv bikin ser devê şûşa ku ava germ tê de ye. Em kaxeza ku devê şûşê girtiye hêdî hêdî bikêşin û li rewşê binêrin. Em ê bibînin, ji ber ku ava germ siviktir e, hibir û ava germ wê berbijor bi nava ava sar de biçin.

## Kengero



Kengero çêlikên xwe heya dibin 6 mehî di tûrikê zikê xwe de xwedî dike. Kengero ajelek giyaxwar e. Di parastinê de kengero dûvikê xwe jî dike alîkarê lingên xwe û zîtikan davêje û bazdide. Kengero hertim direve, heya neçar nebe ti carî şer nake. Di demên tirsê de çêlikên kengero dikevin tûrikê zikê diya xwe. Kengero li zeviyên Awistiralyayê dijîn û coreyê kengeroyan ên ku li ser daran dijîn jî hene. Ew coreyê kengeroyên ser daran li welatê Gineya Nû dijîn.